**Navê Pirtûkê yê Orîjînal:**

'Manifesto of the Communist Party' by Karl Max and Engels. Autharized English Translation: Edited and Annadaded by Frederick Engels, Chicago, Charles it. Karl & Compony.

**Ji Wergêr:**

Min ev berhem ji çapa Îngilizî ya ku di sala 1888'an de bi edîtoriya Frederîck Engels hatiye weşandin wergerand. Hevalê min ê hêja Emîn GURBAN werger di ber çavan re derbas kir, çewtiyên min sererast kirin, bi pêşniyazên xwe yên giranbuha rê nîşanî min da û giyanê kurmanciyê da wergerê. Ku ji aliyê zimên ve wergereke zelal derketibe holê em vê yekê ji hevalê Emîn re deyndar in. Heçî kêmasî ne, ji wan ez berpirsyar im. Xebatek nîn e ku bêyî kêmasî be. Digel vê yekê em di wê baweriyê de ne ku me wergereke baş pêşkêşî xwendevanan kiriye. Bêguman biryara herî rast, a wan e.

*Tonguç Ok*

# NAVEROK

# PÊŞGOTIN[1]

"Manîfesto" wekî platforma "Yekîtiya Komunîst" hate weşandin. Yekîtiya Komunîst di destpêkê de rêxistineke Alman, paşê rêxistineke navneteweyî [enternasyonal] û di mercên siyasî ya Parmezinê[2] ya beriya sala 1848'an de jî bi vî navî rêxistineke nepenî bû. Di meha Sermaweza 1847'an de, di kongreyeke Yekîtiyê ya ku li Londrayê hate li dar xistin de, Marx û Engels bi amadekirina Gernameyeke partiyê ya ji hêla teorîk û kardarî [pratîk] ve bêkêmasî hatin peywirdarkirin. Destnivîs di meha Rêbendana 1848'an de hildan penûsê û çend hefteyên beriya Şoreşa Fransiz a 24'ê Reşemiyê ji çapxaneya li Londrayê re hate weşandin. Wergereke wê ya Fransizî hema beriya Serhildana Pûşperê (1848) li Parîsê hate weşandin. Wergera yekemîn a bi Îngilîzî ji aliyê Miss Helen Macparlane ve hate kirin û di "Red Republican" [Komarparêza Sor] a George Julian Harney de hate weşandin. Her wiha wergerek Dankî û ya Lehkî jî hatin weşandin.

Têkçûna serhildana Pûşperê ya li Parîsê (1848) -di navbera proleterya û burjûveziyê de lêkdana yekemîn a mezin e- keserên civakî û siyasî yên çîna karkeran a Ewropayê dîsa ji bo demekê paş ve avêt. Jê pê de têkoşîna ji bo serdestiyê, wekî beriya Şoreşa Reşemiyê, dîsa bi tenê di navbera beşên cuda yên çîna xwedî milk de dom kir. Çîna karkeran bi têkoşîna ji bo serbestiya tevgerê ya siyasî

1 Ev pêşgotin ji bo çapa Îngilîzî (1888) ji aliyê Engels ve hate nivîsandin.[t.w.]
2 Parzemîn: Parzemîna Ewropayê ya ji bilî gravên Brîtanyayê. [t.w.]

û bi derawaya bûyîna bera çep a Radîkalên çîna navîn hate bisînorkirin. Li her dera ku tevgerên proleter ên serbixwe amajeya jiyanê nîşan dan, ew tevger bi hovane hatin çewisandan. Nexwe polîsên Alman da pey Lijneya Rêveberiya Navendî ya Yekîtiya Komunîst a ku wê demê li Kolnê bû. Endam hatin girtin û piştî girtûbûna bi hejdeh mehan di meha Kewçêra sala 1852'yan de, darizandina wan destpê kir. Vê "Doza Komunîstên Kolnê" ya ni bi nav û deng ji 4'ê Kewçêrê heya 12'ê Sermawezê dom kir. Heft kesên ji girtiyan cezayên girtina hundirê kelehê [kelebendî] yên ku di navbera sê û şeş salan de diguherin xwarin. Piştî darizandinê Yekîtî ji aliyê endamên mayîn ve hate fesixkirin. Heçî "Manîfesto", jê pê ve wisa dixuya ku dê ew çarneçar bihata ji bîr kirin.

Gava ku çîna karkeran a Ewropayê ji bo ji nû ve êrîşkirina bi ser çîna serdest de bi qasî ku têr bike bi xwe ve hat Yekîtiya Navneteweyî ya Karkeran [Enternasyonal] saz bû. Lêbelê vê yekîtiya ku bi armanca komkirina di bin saziyekê ya hemû proleteryaya Ewropayê û ya Amerîkayê hat damezrandin, di destpêkê de nekarî rêgezên ku di "Manîfesto"yê de hatin derpêş kirin bînine zimên. Pêdiviya Enternasyonalê bi bernameyeke têr berfireh hebû, da ku sendîkayên Îngilîz, alîgirên Proudhanî yên li Fransa, Belçîka û Îspanyayê û Lassallyan[1] ên [alîgirên Lassalle] li Almanyayê, wê bipejirînin. Marx ev bername bi şêweyekî ku dê ji aliyê hemû partiyan ve bê ecibandin nivîsand. Wî baweriya xwe bi pêşketina ramanî ya çîna karkeran anî bû. Bêguman ev pêşketin dê di encama çalakiya yekgirtî û niqaşên beramber de pêk bihata. Bûyer û rewşên cur bi cur ên di têkoşîna li dijî sermayeyê de, têkçûnên ku ji serkeftinan zêdetir in, der barê şelaqiyên cur bi cur ên ku mirov pê ve hatine girêdan de, wê zanebûna mirovan pêk bîne û riya rastîn a xilasiya çîna karkeran bi temamî bi wan bide fêm kirin. Û Marx mafdar derket. Gava ku Enternasyonal di sala 1847'an de pelişiya,

1 Lassalle bixwe her tim xwe wekî şagirtekî Marx bi me dida nasîn û li cem me rêgezên "Manîfesto"yê diparastin. Lêbelê di ajîtasyonên xwe yên li ber civakê de ji daxwaza kargehên koperatîfên ku bi qrêdiya dexwletê tên piştgirî kirin pêş ve neçû. [Têbîna Engelsî]

karkerên ku wê li pey xwe hiştin ji yên ku wê di sala 1864'an de dîtûbûn gelek cûda bûn. Li Fransayê Proudhanîzm, li Almanyayê ji Lassallîzm li ber mirinê bûn. Sendîkayên Îngilîz ên kevneperest jî her çiqas têkiliyên xwe yên bi Enternasyonalê re ji mêj ve birîbin jî bi bereberetî pêş ve diçûn û gihîştin wê radeyê ku serokên wan par li Swonseayê wiha got, "Sosyalîzma Parzemînê ji bo me hew tiştekî, sawnak e." Bi rastî jî rêgezên "Manîfesto yê di nav karkerên hemû welatan de pêşveçûnên pirkî, pir nîşan dan.

Bi vî awayî "Manîfesto" dîsa derket pêş. Nivîsara Almanî gelek caran li Swîsre, Îngilîstan û Amerîkayê hate çapkirin. Di sala 1872'yan de li New Yorkê bi Îngilîzî hate wergerandin û di rojnameya hefteyî ya bi navê "Woodhall and Claplin's Weekly" de hate weşandin. Ji vê nivîsara Îngilîzî ji bo Fransizî hate wergerandin û di rojnameya "La Socialiste" de hate weşandin. Jê pê ve du wergerên Îngilîzî yên kêm û zêde têkdayî li Amerîkayê hatin weşandin û yek ji wan li Îngilîstanê ji nû ve hate çapkirin. Wergera yekemîn a Rûsî ji aliyê aliyê Bakunîn ve hate kirin û di salên 1863'yan de li Cenevreyê, di nivîgeha "Kolokol" a Herzenê de hate weşandin. Wergera duyemîn a Rûsî dîsa li Cenevreyê ji aliyê Vera Zasuliç a egîd ve di sala 1882'yan de hat weşandin. Çapa nû ya Dankî ji aliyê "Socialdemokratist Dibliothek" [Pirtûkxaneya Sosyal-Demokrat] ve li Kopenhangê di sala 1885'an de hate çapkirin. Wergereke teze ya Fransizî di sala 1886'an de li Parîsê di "La Socialiste" yê de derket. Piştî vê wergera dawî, ji bo Spanolî wergerek hate amadekirin û di sala 1886'an de li Madrîdê hat weşandin. Hejmara çapên nû yên Almanî nayê zanîn lê bi kêmanî duwazdeh çap hene. Wergereke wê ya bi Ermenkî li Stenbolê dê bihata çapkirin; lêbelê bi qasî ku ez dizanim weşanger ji çapkirina pirtûkeke ku li ser wê navê Marx heye ditirse wergêr jî nîşandana pirtûkê wekî berhema xwe napejirîne û ji ber vê yekê pirtûk nayê weşandin. Min bihîst ku wergerên bi zimanên din jî hene, lêbelê min ew bi çavê xwe nedîtin. Nexwe dîroka "Manîfesto"yê bi piranî dîroka tevgera çîna karkeran a nûjen dide nîşandan. Bêguman ew niha berhema herî belavbûyî û herî navneteweyî ya lîteratûra sosyalîst e; û ji Sibîryayê

bigire heya Kalîforniyayê ji aliyê bi mîlyonan karkeran ve wekî platforma hevpar tê pejirandin.

Dema ku ew hate nivîsandin, me jê re hêj nedigot Manîfestoya Sosyalîst. Wê demê gava peyva sosyalîst hate bilêvkirin ji aliyekî ve sîstemên utopîk ên cihêreng -li Îngilîstanê Owestîst û li Fransayê Fourerîst, ku her du jî bi tenê mezhebên li ber mirinê bûn-, ji aliyê din ve jî çaçûlên civakî yên ku cambaziyên gotinan ên ji her cureyî angaşt dikin ku beyî sermaye û desketî (kâr) bikevin talûkeyê dê ew hemû êş û janên civakî ji holê rakin; ango di her du rewşan de jî yên ku derveyî tevgera çîna karkeran in û zêdetir li piştgiriya çînên "hêvotî" digerîn dihatin hişê mirov. Di nav çîna karkeran de yên ku bi nebesatiya bi tenê şoreşeke siyasî qanî bûn û diviyatiya veguhêraneke civakî hîmî diajotin pêş, xwe wekî komunîst bi nav dikirin. Ew komunîzmeke xam, nebaş tiraşkirî û bi tevahî dozînî bû. Lêbelê dîsa jî li nuxteya meseleyê diket û di navbera karkeran de bi qasî ku bikaribe komunîzma ûtopîk (li Fransayê ya Cabetî û Almanyayê ya Weitlîng'î) biafirîne, xurt bû. Nexwe di sala 1847'an de sosyalîzm tevgereke çîna navîn, komunîzm tevgereke çîna karkeran bû. Sosyalîzm qet nebe li Parzemînê "rêzdar" bû; komunîzm bereveji. Ji ber ku ji destpêkê pê de bi dîtina me "divê rizgariya çîna karkeran berhema çîna karkeran bi xwe be", der barê navê ku em ê ji xwe re hilbijêrîn de şik û guman tune bûn. Bi ser de, jê pê de jî em li mandelekirina vî navî qet nefikirîn.

Her çiqas Manîfesto berhema me herduyan be jî divê ez diyar bikim ku qediyeya bingeh a ku puxteya wê pêk tîne aîdî Marx e. Qediyeya navborî ev e: Di her heyama dîrokî de awayê hilberîn û danûstandinê û wekî encama jênerevîn a wê yekê birêxistinbûna civakî bingehê pêk tînin. Dîroka siyasî û ramanî ya wê heyamê li ser vê bingehê ava dibe û tenê bi vê bingehê ve dikare bê ravekirin. Lewma hemû dîroka mirovahiyê (ji pelişîna civaka seretayî ya babistînî pê ve –ku tê de erd xwedaniya hevpar a civakê bû) dîroka têkoşîna çînan e; dîroka pêvçûnên di navbera çînên serdest û bindest de ye. Ev têkoşînên çînan di rêzeyeke peresanan re derbas bûn û îro gihîştin wê radeyê ku proleterya bêyî ku civakê bi tevahî

ji kedxwarî, pêkutî, cudahiyên çînî û têkoşînên çînan rizgar bike nikare xwe ji nîrê çîna kedxwar û serdestan rizgar bike.

Bi dîtina min teoriya Darwîn ji bo biyolojiyê çi kiribe dê ev qediye jî ji bo dîroknasiyê heman tiştê bike. Çend salên beriya 1845'an em her du jî nêzîkî vê qediyayê dibûn. Min bixwe ji vê hêlê ve çiqas rê kudand, hûn dikarin di xebata min a bi navê "Li Îngilîstanê Rewşa Çîna Karkeran" de bibînin. Lêbelê gave ku ez di bihara 1845'an de çûme Brukselê û tê de dîsa rastî Marx hatim, wî ev qediye bi têgînên ku hema bêje bi qasî yên ku min li jorê bi kar anî zelal in da pêşiya min.

Ji bo çapa Almanî (1872) me bi hev re pêşgotinek nivîsî bû. Ez ji wê pêşgotinê vê jêgirana jêrîn vediguhêzim:

"Her çiqas di nav 25 salên dawîn de şert û merc guheribin jî rêgezên giştî yên di vê Manîfestoyê de hatin nîvisandan îro jî bi tevahî rast û derbasdar in. Li vir û wir dibe ku hin kitekit bêne sererast kirin. Wekî Manîfesto bixwe jî diyar dike, sepandina kardarî ya van rêgezan li her derê û her tim girêdayî mercên dîrokî yên heyî ye. Ji ber vê sedemê li ser bergiriyên şoreşger ên ku di beşa duyemîn de hatin pêşniyaz kirin derbekî taybet nehate dayîn. Îro ew pasaj wê ji gelek hêlan ve bi awayekî cuda bihata nivîsandin. Hem li hemberî gavên dewasa yên ku pîşesaziya nûjen di nav 25 salên dawî yên piştî 1848'an de pêş ve avêtin û birêxistinbûna zêdetir pêşketî û belavbûyî ya çîna karkeran, hem jî li hemberî ezmûnên kardarî yên ku pêşî di Şoreşa Reşemiyê de, paşê û jê zêdetir jî di domana Komuna Parîsê de bidestxistî (li Parîsê ploretaryayê desthiltadariya siyasî bi du mehan di bin destê xwe de girt) ev program ji hêla hin kitekitan ve kevn bûye. Tiştekî ku ji aliyê komunê ve nemaze hate selmandin ev e: "Çîna karkeran nikare pergala heyî ya dewletê hema wisa bigire destê xwe û ji bo armancên xwe bi kar bîne." ("Li Fransayê Şerê Navxweyî; Peyama Civata Giştî ya Yekîtiya Navneteweyî ya Karkeran" binihêrin. Tê de ev xal bi awayekî zêdetir berfireh tê dahûrandin.) Her wiha ew aşkera ye ku rexneya li ser lîteratûra sosyalîst jî îro têr nake.

Ji ber ku ev bi tenê nivîsên heya 1847'an dihewîne. Şîrovên li ser partiyên dijber ên cihêreng jî (Beşa IV'emîn) her çiqas bi hîmî hêj rast bin jî ji hêla kardarî ve kevn bûne; ji ber ku rewşa siyasî bi tevahî guheriye û pêşketinên siyasî piraniya partî yên siyasî yên navborî ji holê rakirin.

"Digel vê yekê Manîfesto êdî bûye belgeyeke dîrokî û ji ber vê sedemê mafê me nîn e ku em li ser wê guherandinekê çêkin."

Berhema di destê we de [wergera Îngilîzî-tw] ji aliyê wergêrê "Kapîtal" a Marx birêz Samuel Moore ve hatiye wergerandin. Me bi hev re çav bi wergerê xist û ji bo ravekirina çewlikên dîrokî min çend têbînî pê vekirin.

*Freoedick ENGELS*

*Londra, 30'ê Rêbendanê, 1888*

# Manifest

der

# Kommunistischen Partei.

Veröffentlicht im Februar 1848.

**Proletarier aller Länder vereinigt euch**

London.

Gedruckt in der Office der „Bildungs-Gesellschaft für Arbeiter“

von J. E. Burghard

46, Liverpool Street, Bishopsgate

Xeyaletetek li Ewropayê digere: Xeyaleta Komunîzmê. Hemû desthilatdarên Ewropaya kevn –Papa û Çar, Metternîck û Guîzat, Radîkalên Fransiz û sîxurên polîsên Alman– di navbera xwe de tifaqeke pîroz çêkirin, da ku vê spêleyê biqewitînin.

Ma partiyeke muxalîf heye ku ji aliyê dijberên xwe yên desthilatdar ve wekî komunîst nehatibe tawanbar kirin? Û partiyeke muxalîf heye ku wê mora komunîstiyê hem ji partiyên dijber ên ji xwe zêdetir pêşketî re hem jî ji neyarên xwe yên paşverû re bi berepaş ve nepekandibe?

Ji vê rastiyê du encam derdikevin holê:

1. Komunîzm ji niha ve ji aliyê hemû desthiladarên Ewropayê ve wekî hêzekê tê pejirandin.

2. Êdî wextê wê yekê ye ku divê komunîst dîtin, raman, armanc û dilxweziyên xwe li ber hemû cîhanê bi awayekî aşkere biweşînin bi manîfestoyeke partiya xwe bersiva vê çîroka spêleya Komunîzmê bidin.

Bi vê mebestê, komunîstên ji neteweyên cur bi cur li Londrayê kom bûn; da ku bi zimanên Îngilîzî, Fransizî, Almanî, Flemenî û Dankî bê weşandin ev manîfestoya li jêrê amade kirin.

# I

# BÛRJÛVA Û PROLETER[1]

Dîroka hemû civakên heyî, heya îro[2], dîroka têkoşîna çînan e. Mirovên azad û bende, lord û serf, hosteyê loncayê û qelfe, bi kurtasî zordest û bindest li hemberî hev di nav dijberiya domdar de bûne û geh bi awayekî veşartî, geh bi awayekî aşkera bênavber pevçûne. Ew pevçûn her carê yan bi jinûvesazkirina civakê ya bi awayekî şoreşgerî yan jî bi hilweşîna çînên têkoşer bi dawî bûye.

Di heyamên pêşîn ên dîrokê de em li her derê sazkirineke tevlihev a civakê û senifandineke cur bi cur a tebeqeyên civakî dibînîn. Di Romaya kevnare de patrîsyen[3], şovalye, pleb[4] û bende; di Serdema Navîn de mîrên feodal, vassal, hosteyên loncayê, qelfe, şagirt û serf hene. Her wiha hema bêje di nava hemû çînên han de em rastî tebeqeyên talî tên.

Civaka burjûva ya nûjen a ku ji kavilên civaka feodal derketiye,

---

1 Peyva 'Burjûvazî' di wateya çîna kapîtalîstên nûjen, ango çîna xwediyên amrazên hilberînê yên civakî û karderên keda-mizedar de tê bikaranîn. Peyva 'proleterya' jî di vê wateyê de hatiye bikaranîn: Çîna karkerên mizedar ên ku ne xwedî amrazên hilberînê ne ku karibin jiyana xwe bidomînin, loma jî divê hêza keda xwe bifroşin. (Têbîna Engelsî)

2 Ango hemû dîroka nivîskî. Di sala 1847'an de civaka beriya dîrokê, ango rêxistina civakî ya beriya dîroka nivîskî hêj nedihat zanîn. Ji wê demê pê de Haxthausenî xwendaniya (mulkiyeta) hevpar a li Rûsyayê keşf kir; Maurerî peyitand ku ew yek (xwedaniya hevpar) bingeha civakî ya hemû nijadên Teutonîk ên ku di dîrokê de cih girtine ye û wekî komên gundên ji Hindistanê heya Îrlandayê li her deverê bûye awayê seretayî (prîmîtîf) yê civakê. Gava ku Morganî xwezaya rastîn a "gens" û têkîliya wê ya bi babistînê re keşf kir, rêxistina navxweyî ya vê civaka komunîst a seretayî bi şêweya xwe ya resen derkete holê. Bi pelişîna van komalên seretayî re civak dest bi dabeşîna di navbera çînên cuda û –axirê- dijraber (antagonîstîk) de dike. Min di (pirtûka xwe) *Jêderka Malbat, Xwendaniya Taybet û Dewletê* de hewl da ku vê pêvajoya pelîşînê bişopînim. – [Têbîna Engelsî]

3 Patrîsyen: Di Romaya Kevnare de endamên çînên serdest. – [Têbîna Wergêr]

4 Pleb: Di Romaya Kevnare de endamên çînên bindest. – [t.w.]

dawiya dijraberiyên çînî neanî; berevajî vê yêkê, li dewsa yên kevn mercên nû yên zordestî û awayên nû yên têkoşînê pêk anîn.

Digel vê yekê, taybetmendiya heyama me –heyama burjûvaziyê– ew e: Wê dijraberiyên çînî xwerû û zelal kirine. Civak, bi tevahî, her ku diçe zêdetir di navbera du aliyên neyar, du çînên mezin ên kü rasterast li dijî hevdu ne de leva dibe: Burjûvazî û proleterya.

Ji serfên Serdema Navîn bajarokiyên ewîl ên ku xwedî mafên taybet in, derketin holê. Ji nava van bajarokiyan jî hêmanên pêşîn ên burjûvaziyê.

Vedîtina parzemîna Amerîkayê û gerîna li derdora Kepiyê Hêviyê ji bo burjûvaziya ku bi pêş ve diçû qadên nû vekirin. Sûkên Hîndistana Rojhilat û yên Çînê, mêtingehkirina Amerikayê, bazirganiya bi mêtingehan, zêdebûna amrazên (navgînên) danûstandinê û bi giştî ya kalêran ji bazirganî, deryavanî û pîşesaziyê re tehneke nedîtî da. Û bi vî awayî di nava civaka feodal a ku dest bi pelişînê kiribû de hêmana şoreşger zûzûka bi pêş ket.

Li bin pergala pîşesaziyê ya feodal hilberîna pîşesaziyê ji aliyê loncayên girtî ve hatibû gemerdanî (monopol) kirin û ew pergal êdî têra hewcehiyên zêdebûyî yên sûkên nû nedikir. Li cihê wê pergala manûfaktûrê ket dewrê. Hosteyên loncayê ji aliyê çîna navîn a manûfaktûrvanan ve avêtin quncikekî. Karbeşiya di navbera loncayên korporatîfên cihêreng ku li hemberî karbeşiya di nava her kargehekê de, nekarî li ber xwe bide, ji hole rabû.

Di vê navberê de sûkan pêşketina xwe didomand û daxwazî jî her ku diçû zêdetir dibû. Manûfaktûrê jî êdî têrê nedikir. Piştre, dûkel û makîneyê di hilberîna pîşesaziyê de şoreşek çêkir. Li şûna manûfaktûrê Pîşesaziya Nûjen û li şûna çîna navîn a pîşesaziyê jî mîlyonerên pîşesaziyê, ango serekên artêşên pîşesaziyê, bi gotineke din burjûvaziya nûjen derket holê.

Pîşesaziya nûjen sûka (bazara) cîhanê pêk anî. Jixwe keşifkirina Amerîkayê riya vê yekê vekirîbû. Wan sûkan bazirganî, deryavanî û xwe-gihandina bejahiyê gelek bi pêş xistin. Bi pêşketina pîşesazî, bazirganî, deryavanî û riyên hesinî re burjûvaziyê jî bi

qasî wê rêjeyê sermayeya xwe zêde kir û hemû çînên ku ji Serdema Navîn mabûn bi paş de xistin. Lewra em dibînin ku burjûvazî bi xwe berhema pêvajoyeke pêşketinê ya dûvedirêj e û encama wan şoreşên e ku di awayên hilberîn û danûstandinê de pêk hatine.

Burjûvazî, digel her gava ku pêş ve avêt, ji hêla siyasî ve jî pêş ve çû. Burjûvazî di bin serdestiya torîniya feodal de çîneke bindest, di nava komunên Serdema Navîn de jî –geh wekî komarên bajarî yên serbixwe (li Îtalya û Almanyayê), geh wekî "tebeqeya seyemîn" a keyîtiyê (monarşiyê) ya ku bac jê dihat standin (li Fransayê)– komeleyeke çekdar û xweser bû. Dûre di heyama manûfaktûrê de li dijî torîniyê suxrevaniya keyîtiyên nîvfeodal an jî yên mutleq kirîbû. Bi rastî ew goşebera keyîtiyên mezin bû. Axirê wê burjûvaziyê ji sazkirina pîşesaziya nûjen û pêkanîna sûka cîhan ê pê ve di nava dewleta nûjen a nîmanî (temsîlî) de serdestiya siyasî xist destê xwe. Rêveberiya dewleta nûjen bi tenê kombesteke ku karên hevpar ên hemû burjûvaziyê dimeşîne.

Burjûvaziyê ji aliyê dîrokî ve rola herî şoreşger leyîst

Li her dera ku burjûvazî lê serdest bû, wê têkiliyên feodal, rêzdar (patriarchal) û pastoral ji holê rakirin. Wê bendên feodal ên ji her cureyî yên ku mirov bi raserên wan ên xwezayî ve girêdidin bi stemkarî qetandin. Di navbera mirovan de ji bilî berjewendiyên ferdî yên çiptazî, ji bilî "diravdana neqd" a dilkevir tiştek nehişt. Xayîsiyên olî yên herî agirnak, çoş û peroşa şovalyetiyê û hestyariya bêteşe di nava ava cemidî ya berjewendîperestiyê de fetisandin. Wê nirxa ferdî dagerand nirxa danûstandinê û li şûna azadiyên taybet ên neguherbar bi tenê azadiyek, azadiyeke bêsînor anî: Bazirganiya Azad. Bi kurtasî wê li şûna kedxwariya ku bi xapandinên alî û siyasî dihat nixumandin û veşartin kedxwariyeke çiptazî û bêşerm, kedxwariyeke rasterast û hov anî.

Burjûvaziyê sîwana hemû pîşeyên ku heya îro pîroz dihatin dîtin û bi xapeke rêzdar nêzîkayî lê dihate kirin jî ji serê wan kir. Wê bijîşk, parêzer, keşe, helbestvan û zanyar kirin kedkarên xwe yên mizedar.

Burjûvaziyê xêliya kartêker û hestewariyê ji rûyê malbatê vekir û têkiliya malbatî dagerand tekiliyeke diravî.

Di Serdema Navîn de pêşaniyên hovane yên serkeftinê –ku paşverû ji wan re heyran diman– çawa tevizî û tiralî wekî temamkera xwe dît, ew yek ji aliyê burjûvaziyê ve hat aşkera kirin. Çalakiya mirovan çi dikare pêk bîne, ew yek jî cara ewilîn ji aliyê burjûvaziyê ve hat nîşandan. Nuwazeyên ku burjûvaziyê afirandine ji Pîramîdên Misirê, kemerên avê yên Romayê û katedralên Gotîk bihartî ne. Wê bi seferên xwe Koçên Qewman û Seferên Xaçdaran bi piyê xwe ve kaş kirin.

Burjûvazî, bêyî ku amrazên hilberînê –lewma têkiliyên hilberînê û bi wan re jî hemû têkiliyên civakî– ji bînî ve biguherîne, nikare hebûna xwe bidomîne. Berevajî vê yekê, ji bo çînên berê yên pîşesaziyê hêvişandina awayên hilberînê yên kevn mercê pêşîn ê hebûnê bû. Di warê hilberînê de şoreşa domdar, di şert û mercên civakî de aloziyên bênavber, nediyariya biberdewam û geremol heyama burjûvaziyê ji heyamên din vediqetînin. Hemû têkiliyên westar (sabît) û sext bi pêşdarazî û hizrên xwe yên kevnar û giramîdar re tên gêzikkirin û avêtin, hemû têkiliyên nû çêkirî ji hêjan bêyî ku cihê xwe bigrin dibin kevnar. Hêmû tiştên hişk dibin hilm û gulm û tevî hewayê dibin, hemû tiştên pîroz giramdariya xwe winda dikin; û di dawiyê de mirov bêgav dimînin ku bi rûbarî hestên giranxû, şert û mercên rastîn ên jiyana xwe û têkiliyên xwe yên wiha, bikevin.

Ji bo berhemên wê, hewcedariya burjûvaziyê ya bi sûka ku her diçe mezin dibe, heye. Wê yekê burjûvazî bi hemû aliyên cîhanê ve ajot. Divê burjûvazî xwe bigihîne her derê, li her derê bi cih bibe û li her derê têkiliyan çêke.

Burjûvaziyê bi bikaranîna sûka cîhanê li hemû welatan ji hilberîn û xeritanê re taybetmendiyeke kozmopolît da. Tevî ku paşverû jê qehirîn, burjûvaziyê bingeha neteweyî ya pîşesaziyê ji bin piyên wê kişand. Hemû pîşesaziyên neteweyî yên kevn an hatin hilweşandin an jî her ku diçe tên hilweşandin. Ew ji aliyê pîşsaziyên nû ve ji holê hatin rakirin. Avakirina van pîşesaziyên nû ji bo

hemû neteweyên şareza meseleya man û nemanê bû. Ew pîşesazî êdî ne madeya xam a xwemalî, lê madeya xam a ku ji herêmên herî dûr tê anîn, bi kar tînin. Berhemên van pîşesaziyên ne bi tenê li nav welat, li çar aliyên cîhanê tên xeritandin. Di demên berê de hilberîna welatan bersiva daxwazên wan dida. Niha em dibînin ku daxwazên nû derketên holê û ji bo bersivdana van daxwazan berhemên welatên dîtir û avhewayên wan divên. Li şûna tenêtiya heremî û neteweyî û li şûna ji xwe re –besayîbûnê êdî li her derê ne bi tenê di warê hilberîna madî de, her wiha di warê hilberîna ramanî (entelektûel) de jî em têkiliyên gerdûnî û rajêrî beramber ên neteweyan dibînin. Afirandinên ramanî yên neteweyên cuda cuda bûn xwedaniya hevpar. Yekalîtî û fehmkoriya neteweyî her ku çû ne gengaz bûn. Ji wêjeyên heremî û neteweyî jî wêjeyeke cîhanê derket holê. Di encama pêşketina lezgîn a hemû amrazên hilberînê û hêsanbûna ragihandinê de burjûvaziyê yên herî barbar (hov) jî di nav de, hemû netewe kişandin hundirê şariştaniyê. Erzaniya kalêrên burjûvaziyê bû topên giran û bi ser hemû sûrên çînî de gule barandin. Bi vî awayî burjûvaziyê zor li barbaran kir, da ku ew dev jî neyariya xwe ya li dijî biyaniyan berdin. Burjûvazî hemû neteweyan bi gefa tunekirinê bêgav dihêle ku ew awayê hilberîna burjûvaziyê bipejirînin û wê tişta ku burjûvazî jê re dibêje şaristanî bikin nava xwe, ango ew bixwe bibin burjûva. Bi kurtasî, burjûvazî li gorî nîgaşa xwe dinyayekê diafirîne.

Burjûvaziyê çolter kirin bin serdestiya bajêr; bajarên pir mezin afirandin; li gorî gelheya çolteran gelheya bajaran gelek zêde kir û bi vî awayî beşeke girîng a çolteran ji debengiya (ehmeqiya) jiyana çolterî xelas kir. Çawa ku wê çolter ji bajaran re rajêr kirin, di heman demê de welatên barbar û yên nîv-barbar ji welatên şareza re, neteweyên gundî ji neteweyên bajarî (burjûva) re û Rojhilat jî ji Rojavayê re rajêr kirin.

Burjûvazî, belawelatiya gelheyê, belawelatiya amrazên hilberînê û belawelatiya xwedaniyê her ku diçe zêdetir ji holê radike. Burjûvaziyê gelhe sift kir; amrazên hilberînê li navendan û xwedanî jî di çendik destan de kom kirin. Encama jênerevîn a vê

yekê navendîbûna siyasî bû. Eyaletên serbixwe yan eyaletên ku bi bendên sist bi hevûdu ve giredayî ne û xwedî berjewendî, zagon, hikumet û pergalên bacê yên cuda ne, di nava neteweyeke ku xwedî hikumetek bi tenê, komeke zagonan, berjewendiyeke çînî ya neteweyî, sînorek û gumrikekê de ye, kom bûn.

Hêzên hilberînê yên ku burjûvaziyê di domahiya serdestiya xwe ya sedsalî de afirandin ji tevehiya hêzên hilberînê yên ku ji aliyê hemû nifşên berê ve hatibûn afirandin hêj xurtir û gumlatî ne. Ketina hêzên xwezayî ya bin fermana mirovan, hilberîna bi makineyan, di warê pîşesazî û çandiniyê de bikaranîna kîmyayê, keştiyên dûkelî, riyên hesinî, telgrafa karebadar (bielektrik), vekirina hemû parzemînan ji bo çandiniyê, bi kanalên avê xistin -bin kontrolê ya çeman, girseyên mirovan ên wekî ji kuna mozegirtikan derbûyî...- Di sedsalan berê de ma bi qasî misqalê be jî pê hesiyan ku ew hêzên hilberînê di hembêza keda civakî de dihênijin?

Bi rastî jî em dibînin ku amrazên hilberînê û yên danûstandinên ku burjûvaziyê xwe li ser wan ava kiriye, di nava civaka feodal de hatin pêkanîn. Di gihîneka diyarkirî ya domana pêşketina van amrazên hilberînê û yên danûstandinê de mercên hilberîn û xertanê yên civaka feodal, sazûmana feodal a çandiniyê û ya manûfaktûrê, ango bi kurtasî têkiliyên xwedaniyê yên feodal êdî li hêzên hilberînê yên pêşketî nedihatin û li pêşiya wan bûne asteng. Diviya ku ew bihatana wesle wesle kirin; û hatin wesle wesle kirin jî.

Reqabeta serbest ket şûna wan. Saziyeke civakî û siyasî ya guncan û serdestiya aborî û siyasî ya çîna burjûvaziyê pê re çûn.

Bizaveke manend li ber çavên me diqewime. Civaka burjûva ya nûjen, civakeke ku amrazên wisan dêwasa yên hilberîn û danûstandinê pêk anîne ji hêla têkiliyên xwe yên hilberîn, danûstandin û xeritanê ve dişibe pifînokekê ku hew dikare alema giyanan ku wî bi sêhrên xwe afirandiye kontrol bike. Digel ku çend dehsal derbas bûne, dîroka pîşesazî û bazirganiyê li dijî mercên hilberîna nûjen û li dijî têkiliyên hilberînê ku her du jî ji bo burjûvazî û serdestiya wê mercên hebûnê yên jêneger in, bi tenê dîroka serhildana hêzên

hilberînê yên nûjen e. Ji bo aşkerakirina vê yekê, mirov qeyranên aborî yên bi awayekî vedorî (periyodîk) pêk tên û her ku diçe zêdetir gefan li hebûna burjûvaziyê dike bîne ziman, bes e. Bi van qeyranan ne bi tenê berhemên heyî, hêzên hilberînê ku di demên berê de hatibûn afirandin jî bi piranî û bi awayekî vedorî ji holê tên rakirin. Şobayeke civakî ku di heyamên berê de tewş bihata dîtin – şobaya hilberîba (ape –di dema van qeyranan de peyda dibe. Civak ji nişka ve xwe di nava rewşa hovîtiya demî de dibîne. Tu dibêjî qey xelayek peyda bûye, şerekî gerdûnî yê wêranaker pêşkêşkirina hemû navgînên debarê biriye. Baş e, lê çima? Ji ber ku pir zêde şaristanî, pir zêde navgînên debarê, pir zêde pîşesazî û pir zêde bazirganî hene. Hêzên hilberînê yên ku di bin fermana civakê de ne, êdî ber bi pêşxistina mercên xwedaniya burjûva ve xwar nabin. Berevajî vê yekê ji bo van mercên ku êdî pêşiya pêşketinên wan digirin ew pir zêde bihêz bûne. Û çawa ku ew ji heqê van astengiyan derketin, pergala burjûva xera dikin û hebûna xwedaniya burjûva diavêjin talûkeyê. Mercên civaka burjûva ji bo heyîna ku ji aliyê hêzên hilberînê ve hate afirandin teng dimînin û nikarin wê heyînê bigirin. Baş e, lê burjûvazî van qeyranan çawa çareser dike? Ji aliyekî ve bi tunekirina hêzên hilberînê û ji aliyê din ve jî bi bidestxistina sûkên nû û bi zêdetir sûd wergirtina ji bazarên kevn. Ango bi çêkirina riya qeyranên zêdetir belavbûyî û wêranker û bi kêmkirina navgînên ku pêşiya qeyranan digirin.

Çekên ku burjûvaziyê li hemberî feodalîzmê bi kar anîbûn niha jî zivirîn wê.

Lêbelê burjûvaziyê ne bi tenê çekên ku dê wê bikujin çêkirin, her wiha mirovên ku dê wan çekan biemilînin jî afirandin.

Burjûvazî, ango sermaye çiqas pêşketibe proleterya, ango çîna karkeran a nûjen –çîna kedkarên ku ancax bi xebatê dikarin jiyana xwe bidomînin û ancax heta ku keda wan sermayeyê zêde bike dikarin ji xwe re karekî bibînin– jî bi qasî wê rêjeyê bi pêş ket. Ew kedkarên ku divê xwe parçe bi parçe bifroşin kalêr in; û lewma jî wekî her kalêre du carî hemû derbejêr û derbejorên reqabetê, hemû pêlpêlînên sûkê dimînin.

Ji ber bikaranîna bi awayekî belavbûyî ya makîneyan û ji ber karbeşiyê karê proletaran hemû taybetmendiyên xwe yên ferdî û ji ber vê yekê jî hemû dilkêşiya xwe ya ji bo karkeran winda kirin. Karker, bû lehêqeke makîneyê û bi tenê hunerweriya herî sivik, herî yeknesak û herî hêsan a hînbûyî jê tê xwestin. Lewra maliyeta karkerekî hate daxistin hema bêje bi tenê navgînên debarê yên ku ji bo domandina jiyan û nifşê wî hewcedariya wî pê heye. Lêbelê buhaya kalerê û her wiha ya kedê jî bi qasî maliyeta xwe ye. Ji ber vê yekê jî kerihîniya karî çiqas zêde be mize jî bi qasî wê rêjeyê kêm dibe. Bi ser de jî bikaranîna makîneyan û karbeşî çiqas zêde bin, geh bi zêdekirina saetên xebetê geh di nav demeke diyarkirî de zêdekirina kar an jî bi lezandina makîneyan kêferatiya kar jî bi qasî wê rêjeyê tê zêde kirin.

Pîşesaziya nûjen atolyeya kargeha biçûk a ji bav û kalan ji hoste re mabû dagerand fabrîqeya mezin. Girseyên kedkaran di nav fabrîqeyê de kom bûn wekî leşkeran hatin birêxistinkirin. Wekî serbazên artêşa pîşesaziyê ketin bin fermandariya hiyerarşiyeke bêkêmasî ya efser û çawîşan. Ew ne bi tenê bendeyên çîna burjûva ne, her wiha ji aliyê manûfaktûrvanên burjûva ve jî roj bi roj, saet bi saet tên bendekirin. Ew despotî destketiyê bi awayekî çiqas aşkera wekî armanca xwe îlan bike, ewqas firûmaye, pelas û tehdekar e. Di warê keda destan de pêdiviya bi jêhatitî û hêzê çiqas kêmtir be, bi gotineke din pîşesaziya nûjen çiqas pêş ketibe keda jinan bi qasî wê rêjeyê cihê keda mêran girt. Ji bo çîna karkeran cudahiya temen û zayendê hew xwedî derbasdariya civakî ye. Ew tevda amûrên xebata ne û li gorî temen û zayenda xwe bi vî yan wî buhayî tên bi kar anîn.

Gava ku karker mizeya xwe digire û kedxwariya febrîqetoran diqede, îcar jî beşên din ên burjûvaziyê –xwediyê xanî, dikandar; gerewkar û hwd.– li stûyê wî siwar dibin.

Tebeqeyên jêrîn ên çîna navîn –esnafê biçûk, dikandar û bi giştî bazirganên ku dev ji karê xwe berdane, pîşekar û gundî– tev de, geh ji ber ku sermayeyên wan ên kêm têrî hilberîna bi pîvanên mezin a Pîşesaziyê Nûjen nedikir û ew li hemberî kapîtalîstan têk çûn, geh ji ber ku hunerweriyên wan ên naserbûyî ku aliyê rêbazên

nû yên hilberînê ve nehêja hatin hiştin, bi berebeyî derawayên (pozîsyonên) xwe winda kirin û bûn proleter. Nexwe proleter ji hêmanên ku ji hemû çînên gel hatine, pêk tê.

Proleterya di gihanekên cihêreng re derbas dibe. Têkoşîna wê ya li dijî burjûvaziyê bi zayîna wê dest pê dike. Lêkdan pêşî ji aliyê kedkarên takekes ve, dûre ji aliyê karkerên fabrîqeyekê ve, paşê jî ji aliyê karkerên li herêmekê û li dijî burjûvayeke takekes a ku keda wan dixwe tê meşandin. Karker ne bi ser mercên hilberîna burjûva de, bi ser amrazên hilberînê de êrîş dikin. Amûrên hawirdekirî (îthalkirî) yên ku li hemberî keda wan dikevin reqabetê dişkînin, makîneyan parî parî dikin, agir berdin fabrîqeyan. Hewl didin ku derawaya windakirî ya karkerên Serdema Navîn bi darê zorê ji nû ve bi dest bixin.

Di vê gihanekê de kedkar hêj girseyeke hevnegirtî ya li her aliyê welat belavbûyî û ji ber ketina nav reqabetê ya bi hevûdu re, parçebûyî ye. Ger ku kedkar li cihekê yek bin da ku komekên bikeystir pêk bînin, ew yek hêj ne encama yekbûna wan a çalak e. Wateya wê ew e ku burjûvazî ji bo gihîştina armanca xwe mecbûr maye ku proleteryayê bi tevahî bixe tevgerê û her wiha bi demeke din jî dikare wê bixe tevgerê. Ji ber vê yekê di vê gihanekê de proleterya ne li dijî dijminê xwe, li dijî dijminên dijminê xwe, ango li dijî bermayiyên keyîtiya mutleq, li dijî xwediyên erdê, li dijî burjûvaziya der-pîşesazî û li dijî burjûvaziya biçûk têdikoşe. Ji ber vê sedemê tevgera dîrokî bi tevahî di destê burjûvaziye de sift dibe. Her serkeftina bidestxistî serkeftinek ji bo burjûvaziyê ye.

Lêbelê bi pêşketina pîşesaziyê re proleterya ne bi tenê bi aliyê hejmarî zêde dibe, her wiha di nav girseyên mezin de kom dibe, hêza we zêde dibe û ew jî zêdetir bi hêza xwe dihese. Çawa ku makîneyan hemû cudahiyên kedê ji holê rakirin û hema bêje her li derê mize kêm kirin û daxistin heman astê, di nav refên proleteryayê de jî berjewendiyên cur bi cur û mercên jiyanê yên cihêreng her ku diçe zêdetir wekhev dibin. Reqabeta di navbera burjûvayan de ya ku her diçe mezin dibe û qeyranên aborî yên ku di encama vê yekê de derdikevin holê mizeyên karkeran hêj zêdetir dipêlpêlînin.

Pêşketina bênavber û bileza nedîtî ya makîneyan jiyana karkeran hêj zêdetir bê ewle kir. Lêkdana di navbera burjûvayê takekes û karkeran de her ku diçe dirûvê lêkdaneke di navbera du çînan de digire. Ji ber vê sedemê karker li dijî burjûvaziyê dest bi pêkanîna yekîtiyan (sendîkayan) dikin, da ku asta mizeyên wan nekeve, ew tev bi hevre têdikoşin; da ku ji bo van serhildanên çendemî di pêş de amade bin, rêxistinên mayînde dadimezrînin. Li her derê peqîn li lêkdanan dikeve û ew lêkdan dadigerin raperînan.

Car caran karker bi ser dikevin, lêbelê bi tenê ji bo demekê. Fêkiya têkoşîna wan ne di encama nêzîk de, di yekîtiya wan a ku her diçe bi pêş dikeve de, tê girtin. Amrazên ragihanê yên ku ji aliyê pîşesaziya nûjen ve hatin afirandin alîkariya wê yekîtiyê dikin û di navbera karkerên ji heremên cuda de têkiliyan datînin. Ji bo ku têkoşînên bêhejmar ên xwedî heman taybetmendiyan di nav têkoşîneke neteweyî ya navçînî de bên navendîkirin jî pêdivî bi vê têkiliyê hebû. Ji ber vê hindê her têkoşîna çînî têkoşîneke siyasî ye. Û tevî ku ji ber rêbejehiyên xerab ji bo yekîtiya bajarokiyên Serdama Navîn pêdivî bi sedsalan hebûn, proleterên nûjen bi saya riyên hesinî di nav çend salan digihîştin wê yekîtiyê.

Ji ber reqabeta di navbera karkeran de, birêxistinbûna proletaran wekî çînek û lewra jî wekî partiyeke siyasî domdar serobin dibe. Lêbelê, ew her carê ji nû ve û bi awayekî hêj bi hêztir û biryardar radibe ser piyan. Bibikaranîna dubendiyên di navbera burjûvayan de zorê dide wan ku berjewendiyên taybet ên karkeran bixin binê temînata zagonî. Li Îngilîstanê zagona kar a rojane ya deh saetî bi wî awayî kete meriyetê.

Lêkdanên di navbera çînên civaka kevn de bi tevahî û bi her awayî alîkariya pêşketina proleteryayê dikin. Burjûvazî xwe di nav pevçûneke domdar de dibîne: Pêşî bi arîstokrasiyê re, paşê jî bi beşên burjûvaziyê yên ku pêşveçûna pîşesaziyê li berjewendiyên wan nedihat re; û her tim bi burjûvaziyên welatên din re. Di nav van hemû pevçûnan de burjûvazî dibîne ku hewcedariya wê bi alîkariya proleteryayê heye; serî lê dide, alîkariyê jê dixwaze û bi vî

awayî wê ber bi qada siyasetê ve dikişîne. Lewra, burjûvazî bixwe hêmanên perwerdehiya siyasî û giştî ya proleteryayê pêşkeşî wê dike, bi gotineke din ew bi destê xwe proleteryayê çekdar dike da ku li di jî wê têbikoşe.

Her wekî me berê jî dîtibû, bi pêşveçûna pîşesaziyê ve ji endamên hemû beşên çînên serdest hin kes derbasî refên proleteryayê bûn; an jî bi kêmanî mercên hebûna wan ketin talûkeyê. Ew yek jî ji bo ronîbûn û pêşveçûnê, hêmanên nû pêşkêşî proleteryayê dike.

Axirê, gava ku wextê diyarker ê têkoşîna çînan nêzîk dibe, pêvajoya pelişînê ya ku di nava çîna serdest de an jî bi rastî di nava hemû qadên civaka kevn de didome awayekî wisa tund û bi bandor digire ku beşeke biçûk a çîna serdest dikeve ber vê lehiyê û tev li çîna şoreşger –çîna ku paşeroj di destê wê de ye– dibe. Çawa ku di heyama berê de beşeke torîniyê derbasî burjûvaziyê bûbû, niha jî beşek burjûvaziyê derbasî proleteryayê dibe; bi teyabetî jî beşeke ji îdeologên burjûva yên ku asta têgihîna xwe ya teorîk bi qasî ku bi karibin tevgerên dîrokî bi tevahî têbigihîjin bi pêş ve birine.

Ji hemû çînên ku îro li hemberî burjûvaziyê derdikevin bi rasti tenê proleterya çînek şoreşger e. Çînên din her ku diçe dipelişin û di dawiyê de li ber pîşesaziya nûjen ji holê radibin. Heçî proleterya, ew berhema wê ye taybet û sereke ye. Çîna navîn a jêrin; manûfaktûrvanên biçûk, dikandar, pîşekar, gundî tev de ji bo ku wekî beşên çîna navîn hebûna xwe ji tunebûna xwe xelas bikin li dijî burjûvaziyê têdikoşîn. Ji ber vê yekê ew ne şoreşger in, kevneperest in. Her wiha, ji ber ku hewl didin çerxa dîrokê bi paş ve biçerixînin ew paşverû ne jî. Ger ku bi rasthatinî şoreşger bin, sedem ew e: Dizanin ku ew ê di demeke kin de derbasî proleteryayê bibin û vê yekê li ber çavan digirin. Ango ew ne ji bo berjewendiyên xwe yên îroyîn, ji bo berjewendiyên xwe yên dahatuyê têdikoşin; cihê xwe diterikînin da ku di nav refên proleteryayê de bi cih bibin.

Heçî “çîna xaternak” e, pergê civakî (pêxwas) –ew pirseya ku ji aliyê tebeqeyên jêrîn ên civaka kevn ve avêtine quncikekî û tê de bi tebatî dirize dibe ku li vir û wir ji aliyê şoreşek proleter ve ber bi

tevgerê de bê kişandin. Lê digel vê yekê mercên jiyanê, vê girseyê ji bo dek û dolabên peşverûyan wekî amûreke bi pere amade dikin.

Di nav şert û mercên proleteryayê de mercên civaka kevn hema bêje bi tevahî ji holê rabûne. Proleter bê milk e. Têkiliya wî ya bi jin û zarokên wî re bi tu awayî naşibe têkiliya malbata burjûvaziyê. Karê nûjen ê pîşesaziyê û ji sermayeyê re rajêrîbûna nûjen -ku ew yek hem li Îngilîstanê hem jî li Fransayê, li Amerîkayê û li Almanyayê eynî ye- proleter ji hemû taybetmendiyên neteweyî bê par hişt. Hiqûq, sinc, ol ji bo wan pêşdaraziyên burjûva ne û li paş van pêşdaraziyan berjevendiyên burjûva kemîn vergitine.

Hemû çînên berê yên desthildar civak ji mercên xwe yên malkirinê re rajêrî kirine û bi vî awayî hewldane ku derawayên xwe yên ku pêşî bi dest xistibûn, biparêzin. Lêbelê bêyî ku awayê xwe yê malkirinê û pê re hemû awayên din ên malkirinê ji holê rakin, proleter nikarin serweriyê li hêzên hilberînê yên civakê bikin. Tu tiştekî wan a taybet nîn e ku biparêzin û bizeximînin. Erka wan ji holê rakirina hemû ewlayî û starên xwedaniya taybet e.

Hemû tevgerên dîrokî yên berê tevgerên hindikahiyan bûn, an jî xizmeta berjewendiyên hindikahiyan dikirin. Lêbelê tevgera proleterya, tevgera hişdar û serbixwe ya piraniya raser e. Beyî ku tebeqeya herî jorîn a civaka fermî bi tevahî ji holê rake, proleterya, ango tebeqeya herî jêrîn a civakê nikare rabe ser piyan.

Têkoşîna proleteryayê ya li dijî burjûvarziyê ji hêla naveroka xwe ve nebe jî hêla şêweyê xwe ve di serî de têkoşîneke neteweyî ye. Proleteryaya her welatî bêguman bêriya her tiştî divê ewil ji heqê burjûvaziya xwe derkeve.

Gava ku me gihanekên herî giştî yên pêşketina proleteryayê dişayesandin, me şerê navxweyî yê kêm û zêde veşartî -şerê ku di nav civaka heyî de hikmê xwe dike- şopand; heya ku ew şer dagere şoreşa vekirî û hilweşandina bi darê zorê ya burjûvaziyê bingehên serdestiya proleteryayê pêk bîne.

Me dît ku heya îro hemû civak li ser dijraberiya çînên serdest û bindest avabûne. Lêbelê ji bo pelixandina çînekê hewce ye ku

qet nebe hebûna wê ya bendeyî bê dayîn. Di heyama serfîtiyê de serfan derawaya xwe bilind kir û endamtiya komunê bi dest xist. Bi heman awayî burjûvaziya biçûk jî di bin nîrê feodalîzma mutleq de xwe bi pêş ve xist û bû burjûva. Lêbelê kedkarên nûjen, berevajiyê wê yekê, bi pêşketina pîşesaziyê re li dewsa ku bi pêş ve here her ku diçe zêdetir xerq dibe û li jêra mercên hebûne yên çîna xwe dikeve. Ew dibe xizan. Xizanî hem ji gelheyê hem jî dewlemendiyê hêj bileztir zêde dibe. Û di vê gihanekê de bi awayekî aşkera derdikeve holê ku burjûvazî hew dikare bibe çîna rêveber a civakê û mercên xwe yên hebûnê wekî zagoneke sereke li ser civakê pêwist bike. Ji bo birêvebirinê ne kêrhatî ye, ji ber ku di nava sînorên bendetiyê de ew nikare hebûna bendeyane ya bendeyên xwe jî bixe bin temînatê û nikare pêşî li xerqbûna wan bigire, bendeyên wê ewqas xerq dibin ku li şûna ji aliyê wan ve bên xwedîkirin divê ew wan xwedî bike. Civak hew dikare di bin serdestiya vê burjûvaziyê de bijî; bi gotineke din hebûna wê hew li civakê tê.

Ji bo hebûn û serdestiya burjûvaziyê merca sereke pêkhatin û zêdebûna sermayê ye; merca sermayeyê jî keda mizedar e. Keda mizedar bi tenê xwe dispêre reqabeta di navbera kedkaran de. Pêşveçûna pîşesaziyê ku handêrê wê yê bêhemdî burjûvazî ye, li dewsa tenêbûna (îzolasyona) kedkaran a bi reqabetê ve girêdayî, yekbûna wan a bêhemd a bi organîsazyona kar ve girêdayî tîne. Lewma, pêşketina Pîşesaziya Nûjen bingeha ku burjûvazî li ser wê hilberînê didomîne û berhemên xwe mal dike, ji bin piyê burjûvaziyê dikişîne. Ji ber vê yekê burjûvazî di serî de û beriya her tiştî mirovên ku gora wê dikolîn diafrîne. Hem hilweşîna wê hem jî serkeftina proleteryayê di heman radeyê de misoger e.

# II

# PROLETER Û KOMUNÎST

Bi gelemperî helwesta komunîstan a li hemberî proletaran çawa ye?

Komunîst li dijî partiyên çîna karkeran partiyeke cuda pêk naynin.

Ji bilî berjewendiyên proleteryayê tu berjewendiya cuda ya komunîstan nîn e.

Tu rêgezeke wan a sekter (mezhebî) nîn e ku pê re teşe bidin tevgera proleter.

A ku komunîstan ji partiyên din ên prolertaryayê vediqetîne ev e: 1) Di nava têkoşînên neteweyî yên proleterên ji welatên cur bi cur de komunîst ji bilî yên neteweyî berjewendiyên hevpar ên hemû proleteryayê destnîşan dikin û derdixin pêş. 2) Di gihanekên cihêreng ên pêşketinê yên ku divê proleterya li dijî burjûvaziyê di wan re derbas bibe de komunîst her tim û li her derê berjewendiyên hemû tevgerê dinimînin.

Lewma, komunîst ji aliyekî ve di karvaniyê (pratîkê) de beşa herî pêşketî û biryardar a partiyên karkeran ên hemû welatan e û van partiyan bi pêş ve dibin; ji aliyê din ve jî di warê teorîk de li hemberî girseya mezin a proletaran xwedî avantajeke wisa ye: Ew der barê bereka meşê, merc û encamên giştî yên tevgera proleter de xwedî têgîhîneke zelal in.

Armanca nêzîk a komunîstan ji ya hemû partiyên din ên proleter ne cuda ye: Pêkanîna çînek proleter, hilweşandina serdestiya burjûva û bidestxistina desthilatdariya siyasî.

Darazên komunîstan ên teorîk bi tu awayî xwe naspêrin raman û rêgezên ku ji aliyê qaşo reformvanên gerdûnî ve hatine afirandin.

Ew bi tenê pêwendiyên rastîn ên ji têkoşîneke çînan û tevgereke dîrokî ya ku li ber çavên me diqewime derketî bi têgînên giştî didin nîşandan. Ji holê rakirina têkiliyên xwedaniyê yên heyî ne taybetmendiyeke veqetîner a komunîzmê ye.

Hemû têkiliyên xwedaniyê yên berê bênavber dûçarî guherînên dîrokî mane; ku ev guherîn jî encama guherînên di mercên dîrokî de ne.

Wek mînak, Şoreşa Fransiz xwedaniya feodal ji bo berjewendiyên burjûvaziyê ji holê rakir.

Ji holê rakirina xwedaniyê ya bi giştî ne taybetmendiya komunîzmê ya veqetîner e. Taybetmendiya komunîzmê ya veqetîner ji holê rakirina xwedaniya burjûva ye.

Lêbelê xwedaniya taybet a burjûvaziya nûjen, derbirîna dawîn û herî nekêm a pergala hilberîn û malkirinê ye; ku ew pergal jî xwe dispêre dijberiya çînî û kedxwarina piraniyê ya ji aliyê hindikahiyê ve. Di vê wateyê de mirov dikare teoriya komunîstan bi hevokekê xulase bike: Ji holê rakirina xwedaniya taybet.

Dibêjin ku komunîst dixwazin mafên malkirina ferdî ya ku mirovan bi xebata xwe ya ferdî bi dest xistiye ji holê rakin; û me kamunîstan bi vê tawanbar dikin. Ew xwedanî qoşa bingeha hemû azadî, çalakî û serwebûna ferdî ye.

Xwedaniya bi zehmetî hatiye bidestxistin, bi xwe –gezenckiriye, bixwe– ji xwe re kirî ye! Hûn qala xwedaniya pîşekarên biçûk û gundiyên belengaz, ango qala şêweyekî xwedaniyê yê pêşiya xwedaniya burjûva dikin? Hewce nîn e ku ew xwedanî bê rakirin. Jixwe pêşketina pîşesaziyê ji niha ve ew bi piranî ji holê rakiriye; û hêj jî roj bi roj wê ji holê radike.

An jî hûn qala xwedaniya taybet a burjûva dikin?

Baş e lê, ma keda-mizedar tu xwedaniyê ji bo kedkaran diafirîne. Na, ne piçikek jî. Ew sermayeyê diafirîne; ango şêweyê xwedaniyê ku ji keda-mizedar dixwe û bêyî ku keda-mizedar a nû ji bo kedxwariya teze bê pêşkeşkirin nikare zêde bibe. Xwedanî di nav şêweyê xwe yê heyî de xwe dispêre dijraberiya di navbera sermaye û keda-mizedar de. Fermo, werin em ji her du aliyên ve vê dijraberiyê di ber çavan re derbas bikin.

Kapîtalîstbûn ne bi tenê xwedîbûna derawayeke ferdî ye, her

wiha xwedîbûna derawayeke civakî ye jî. Sermaye berhemek peyrayî (kolektîf) ye û tenê ji aliyê çalakiya yekgirtî ya gelek endamên civakê ve, bi ser de di dahûrana dawîn de ji aliyê çalakiya yekgirtî ya hemû endamên civakê ve, dikeve tevgerê.

Lewra sermaye ne hêzeke ferdî ye, hêzeke civakî ye.

Ji ber vê yekê gava ku sermaye hat dagerandin xwedaniya hevpar, ango xwedaniya hemû endamên civakê, ew nayê wê wateyê ku xwedaniya ferdî hat dagerandin xwedaniya civakî. A ku hatiya guherandin bi tenê rewişta civakî ya xwedaniyê ye. Xwedanî rewişta xwe ya çînî winda dike.

Werin em niha jî keda-mizedar hildin dest.

Buhayê nîvane yê keda-mizedar mizeya kêmtirîn e; ango yekûna navgînên debarê yên jêneger e kedkar pê hebûna xwe ya wekî kedkarekî didomîne. Nexwe, yên ku kedkar bi saya keda xwe bi dest dixe tenê têrî domandina hebûn û nifşa wî dikin. Em qet dil nakin vê malkirina ferdî ya berhemên kedê ji holê rakin. Sedema wê domandin û ji nû ve hilberandina jiyana mirovan e. Ew li paş xwe tu bermayî nahêle ku pê re kedên din bixe bin hikmê xwe. Em dixwazin bi tenê dawî li taybetmandiya sernewq a wê malkirinê bînin. Ji ber ku li bin vê yekê kedkar bi tenê ji bo zêdekirina sermayeyê dijî; û bi tenê heta ku ji bo berjewendiyên çîna serdest pêdivî pê çêbe destûra jiyana wî didin.

Di nav civaka burjûva de keda zindî bi tenê navgîneke ji bo zêdekirina keda hêwirî ye. Heçî civaka komunîst, tê de keda hêwirî tenê navgîneke ji bo firehkirin, dewlemendkirin û handana habûna kedkaran.

Lewma di nav civaka burjûva de pêşeroj li ser paşêrojê, di nav civaka komunîst de jî paşeroj li ser pêşerojê serwer e. Di nav civaka burjûva de sermaye serbixwe ye û xwedî kesayetî ye. Ligel vê yekê mirovê xebatkar rajêr e û ne xwedî kesayetî ye.

Burjûvazî ji holê rakirina vê rewşê wekî ji holê rakirina kesayetî û azadiyê bi nav dike! Mafdar e jî. Bêguman armanca me ji holê rakirina kesayetiya burjûva, serxwebûna burjûva û azadiya burjûva ye.

Alazkirina azadî di bin mercên heyî yên burjûva de bazirganiya azad, kirîn û frotina azad e.

Lêbelê ger ku kirîn û firotin ji holê rabe, kírîn û firotina azad jî ji holê radibe. Ew qala kirîn û firotina azad û hemû "gotinên wêrek" ên burjûvaziya me yên li ser azadiya bi giştî tenê di Serdema Navîn de li dijî kirîn û firotina zêfandî û tenê ji hêla bazirganên astengkirî ve watedar bûn. Lêbelê li hemberî ji holê rakirina kirîn û firotinê, ji holê rakirina mercên hilberînê yên burjûva û ji holê rakirina burjûvaziyê bixwe, ev gotinên han bi tevahî bêwate ne.

Hûn ji ber mebesta me ya ji holê rakirina xwedaniya taybet diciniqin. Baş e, lê di nav civaka we ya heyî de, ji bo ji dehî nehê gel xwedaniya taybet jixwe ji holê hatiye rakirin. Hebûna wê (xwedaniya taybet) ya ji bo hindikahiyeke biçûk bi tunebûna wê ya ji bo ji dehî nehê gel ve girêdayî ye. Nexwe hûn me bi dilkirina ji holê rakirina şêweyekî xwedaniyê tawanbar dikin; ku mercê jêneger ê hebûna vê xwedaniyê tunebûna xwedaniya ji her cureyî ji bo piraniya raser a gel e.

Bi kurtasî hûn me bi dilkirina ji holê rakirina xwedaniya xwe tawanbar dikin. Belê, a ku em dil dikin bi mîsogerî ew e.

Ji kêliya ku ked hew dikare bê dagerandin sermaye, diravan rantê -ango hêzeke civakî ya gemerdanî kirî- pê ve; bi kurtasî ji kêliya xwedaniya ferdî hew dikare bê dagerandin xwedaniya burjûva (sermayeyê) pê ve ferdîtî ji holê radibe.

Ji ber vê yekê divê hûn ji xwe mikur bên ku gava hûn dibêjin 'ferd' alaza we bi tenê burjûva ye, kesê ji çîna navîn a xwedî milkan e. Ew kes bi rastî jî divê ji holê bê rakirin û avêtin.

Komunîzm tu kesî ji hêza malkirina berhemên civakî bêpar nahêle. Ew bi tenê wî kesî ji hêza xistina bin nîrê keda mirovan, ji amûrên wiha yên malkirinê bêpar dihêle.

Li ber vê yekê radibin û dibêjin ku piştî xwedaniya taybet ji holê hat rakirin hemû xebat dê bisekinin û tîraliyeke gerdûnî dê me tev de dîl bigire.

Li gorî vê vacê (mantiqê) civaka burjûva diviya ji mêj ve ji ber beredayitiyê bihelikiya. Çimkî endamên wê civakê yên ku dixebitin nikarin tu tiştî bi dest bixin; yên ku hemû tiştan bi dest dixin jî naxebitin. Ev îtîraz bi tenê bilêvkirina din a wê totolojiyê ye: ji ber ku hew sermaye hebe, keda- mizedar jî hew dibe.

Burjûvazî ji ber windabûna çandê şîn digire. Lêbelê ew çand ji bo piraniya raser bi tenê perwerdeyeke ku wan hînî tevgerîna wekî makîneyan dike.

Heta ku hûn mebesta me ya ji holê rakirina xwedaniya burjûva li gorî pîvanên xwe û bi têgînên burjûva mîna azadî, çand, hiqûq û hwd. biwezinînin, bi me re niqaş nekin. Ramanên we encamên xwezayî yên şert û mercên hilberîna we yên burjûva û xwedaniya burjûva ne. Her wiha hiqûqa we jî vîna çîna we ye, vîna pêkanîna zagonek ku ji bo her kesî girêdar e. Rewişt û bereka vê vînê jî ji aliyê mercên hebûnê yên çîna we ve tên diyar kirin.

Şaş têgîhîneke xweperest han (teşwîq) dide we da ku hûn şêweyên civakî yên ku ji awayê hilberîn û xwedaniya we yê heyî derketin – têkiliyên dîrokî yên ku di pêvajoya hilberînê de derdikevin holê û ji holê radibin– dagerînin zagonên nemir ên hiş û xwezayê. Hûn vê şaş têgîhînê bi hemû çînên serdest ên beriya we re parve dikin. A ku hûn di xwedaniya kevnare de bi aşkerayî dibînin û der barê xwedaniya feodal de dipejirînin, nikarin di xwedaniya xwe ya burjûva de bibînin û bipejrînin. Pejirandina wê ji we re qedexekirî ye.

Ji holê rakirina malbatê! Yên herî radîkal jî li hemberî vê pêşniyara bêfedî ya komunîstan diqehirin.

Baş e, lê malbata burjûva ya heyî li ser çi bingehê ava bûye? Li ser sermayeyê û qezenca taybet. Bi awayekî tam pêşketî ev malbat bi tenê di navbera burjûvayan de heye. Digel vê yekê, di navbera proletaran de temamkera vê rewşê tunebûna rasteqînî ya malbatê û di nav civakê de jî belaviya fihûşê ye.

Gava ku temamkera wê ji holê rabû, dê malbata burjûva jî ji holê rabe û ew her du jî bi ji holê rabûna sermayeyê re dê ji holê rabin.

Hûn me bi xwestina ji holê rakirina kedxwariya zarokan ji aliyê dê û bavan ve sûcdar û tavanbar dikin? Baş e, em vî sûcî bi dilxweşî digirin ser xwe.

Lêbelê hûn ê bibêjin ku şûna perwerdehiya malbatê pêkanîna perwerdehiya civakî têkiliyên herî pîroz ji holê radike.

Ew perwerdehiya we! Ma ew jî ne civakî ye? Ma ne ji aliyê mercên civakî ve ku hûn li bin van mercan perwerde dikin, tê diyarkirin? Civak geh bi rasterast geh bi navberiya dibistanan û hwd. têkilî bi perwerdehiyê nake? Têkilîkirina bi perwerdehiyê ne dahêna (îcada) komunîstan e. Komunîst bi tenê hew didin da ku rewişta vê têkilîpêkirinê biguherînin û perwerdehiyê ji bandora çîna serdest rizgar bikin.

Pîşesaziya nûjen, di navbera proletaran de têkiliyên malbatî her ku diçe zêdetir dike kerker, zarokên wan dadigerîne eşyayên hêsan ên bazirganî û amrazên kar. Ji ber vê yekê teretûreyên burjûvaziyê yên li ser perwerdehî û têkiliya pîroz a di navbera dê-bav û zarokan de jî her ku diçe zêdetir keraxî dibe.

Burjûvazî dike qaje qaj, dibêje hûn komunîst dê jinan bikin malê civakê yê hevpar!

Burjûva jina xwe wekî amrazeke hilberînê dibîne. Û gava ku ew dibihîze dê amrazên hilberînê bi awayekî hevpar bêne bikaranîn, nikare encameke din jê derxe û dihesibîne ku jin jî wekî amrazên din dê bibin milkên hevpar ên her kesî.

Jin wekî amrazên hilberînê tên dîtin. Armanca komunîstan ji holê rakirina wê derawaya jinan e lêbelê hişê wan têra vê yekê nake.

Burjûvaziya me angaşt dike ku dê komunîst jinan bi awayekî aşkera û fermî bikin milkên hevpar û hêrsa wan pê radibe. Tiştek tune ye ku ji vê hêrsa wan pêkenoktir be. Hewce nîn e ku komunîst xwedaniya hevpar a jinan bînin. Jixwe ew yek ji demên herî kevn pê ve heye.

Burjûvayên me qîma xwe bi jin û keçên karkerên xwe naynin

-em qala qehpikan nakin jî-; her wiha ji xirandina jinên hevdu jî gelek hez dikin.

Pergala zewaca burjûva bi rastî emilandina hevparî ya jinê ye. Ji ber wê yekê ew dikarin komunîstan bi xwestina anîna hevpariya aşkera û zagonî ya jinan li şûna fihûşa bi durûtî û veşartî herî zêde tawanbar bikin. Lê ev xirecirên burjûva li aliyekî, ew aşkera ye ku gava pergala hilberînê ya heyî ji holê hat rakirin, divê hevpariya jinan a ku ji vê pergalê derketiye jî ji holê bê rakirin.

Her wiha, komunîst bi xwestina ji holê rakirina welat û neteweyan jî tên tawanbar kirin.

Welatê karkeran nîn e. Em nikarin tiştekî ku ew ne xwedî bin ji destê wan bigirin. Ji ber ku proleterya beriya her tiştî divê serdestiya siyasî bi dest bixe, divê ew bixwe neteweyan pêk bîne. Di wateya burjûva ya peyvê de nebe jî heta radeyekî jixwe ew bixwe neteweyî ye.

Cudahî û dijraberiyên neteweyî yên di navbera gelan de bi saya pêşketina burjûvaziyê, azadiya bazirganiyê, pêkhatina sûka cîhanê, manendiya awayê hilberînê û ya mercên jiyanê her ku diçe ji holê radibin.

Serdestiya proleteryayê dê wan cudahî û dijraberiyan hêj bileztir ji holê rake. Çalakiya yêkbûyî ya qet nebe welatên şareza yekî ji mercên pêşîn ên rizgariya proleteryayê.

Gava ku kedxwarina mirovekî ji aliyê mirovekî din ve bi dawî bû dê kedxwarina neteweyekê ji neteweyek din ve bi dawî bibe. Gava ku di nava neteweyê de dijraberiyên çînî ji holê rabûn, dê neyariya neteweyekê ya li dijî neteweyeke din jî ji holê rabe.

Tehnandinên li dijî komunîzmê yên ji bergeha olî, felsefî û bi giştî jî bîrdoziyê (îdeolojîk) ne hêjayî lêkolînek cidî ye.

Bi her guherîneke ku di mercên hebûnê, têkiliyên civakî û jiyana civakî ya mirovan de pêk tê raman, dîtin û têgihanên mirovan jî diguherin. Ji bo ku mirov bi vê rastiyê fêhm bike, ma pêdivî bi feraseta kûr heye?

Bi qasî ku hilberîna madî diguhere hilberîna ramanî jî ji hêla rewişta xwe ve diguhere. Ma dîroka ramanan ji bilî vê kirûyê çi diselmîne? Ramanên serdest ên her serdemê ramanên çîna serdest a wê serdemê ne.

Gava ku der barê ramanên ku bi awayekî şoreşgerî civakê diguherînin de tê axaftin, rastiya ku nayê gotin ev e: Hemanên civaka nû di nav civaka kevn de hatin afirandin. Bi ji holê rabûna mercên kevn re ramanên kevn jî ji holê radibin.

Dema ku cîhana kevnare di sekeratê de bû filehiyê olên kevnare têk birin. Gava ku ramanên filehîtiyê di sedsala 18'emîn de stû ji ramanên rasyonalîst ve xwar kir, civaka feodal bi burjûvaziya şoreşger a wê demê re di nav şerê man û nemanê de bû. Ramana azadiya olî û wijdanî ancax di warê zanyariyê de wate da serdestiya reqabeta azad.

Dê bê gotin ku:

"Ramanên olî, sincî, felsefî û hiqûqî di domana pêşketina dîrokê de bêguman hatine guherandin. Lêbelê ol, sinc, felsefe, siyasetzanîn û hiqûq digel vê guherandinê her tim li ser piyan mane."

"Her wiha rastiyên nemir ên wekî azadî, dadmendî û hwd. ku ji bo civakên ji her cureyî nirxên hevpar in jî hene. Komunîzm li şûna ku li ser bingeheke nû ve ava bike; hemû rastiyên nemir -ol, sinc û hwd.- bi tevahî ji holê radike. Lewma, ew bi berevajiyê hemû ezmûnên dîrokî ve tevdigere."

Xuleseya vê tawanbarkirinê çi ye? Dîroka hemû civakên pêşerojê xwe spartiye pêşketina dijraberiyên çînî. Van dijraberiyan jî di heyamên cihêreng de teşeyên cihêreng girtin e.

Digel vê yekê teşeya ku wan girtiye çi dibe bila bibe ji bo hemû serdemên bihurî rastiyeke hevpar heye: xwarina keda beşeke civakê ya ji aliyê beşeke din ve. Nexwe ew xwezayî ye ku digel hemû piranî û çendetexlitiyên ku wê pêşandan hişmendiya civakî ya serdemên bihurî di nav teşeyên hevpar de an di nav çarçoveya ramanên giştî de tevdigere. Ku ew dijraberiyên çînî bi tevahî ji holê ranebin, ew teşe û raman jî ji holê ranabin.

Şoreşa Komunîst veqetina kokdar (radîkal) a ji têkiliyên kevneşopî yên xwedaniyê ye. Xwezayî ye ku ji bo pêşketina wê pêdivî bi veqetîna radîkal a ji ramanên kevneşopî heye.

Ka werin êdî em dev ji îtîrazên burjûvaziyê yên li dijî komunîzmê berdin.

Me li jorê dît ku di şoreşê de gavê yekemîn ev e. Divê proleterya xwe bilind bike derawaya çîna serdest û di têkoşîna demokrasiyê de bi ser bikeve.

Proleterya dê serdestiya xwe ya siyasî bi kar bîne da ku hemû sermayeyê gav bi gav ji destê burjûvaziyê derxe, hemû amrazên hilberînê di destê dewletê de ango di destê xwe yê wekî çîna serdest birêxistin bûyî de navendî bike û hêzên hilberînê bi qasî ku ji destê wê bê bi lezitî zêde bike.

Bêguman di destpêkê de bêyî êrîşên tund ên li ser mafên xwedaniyê û mercên hilberîna burjûva, ew yek ne pêkan e. Lewra jî bi bergiriyên ku ji hêla aborî ve kêm û nehişwer dixuyin lê bi pêvajoya tevgerê ve dê ji xwe bibihêrin, divê li ser pergala kevn a civakê êrîşên nû bêne kirin. Ji bo ku awayê hilberînê ji bînî ve bê guherandin ew êrîş wekî navgînekê jêveneger in.

Ev bergirî, bêguman, li gorî welatan diguherin.

Digel vê yekê di welatên herî pêşketî de bergiriyên guncan ev in:

1. Divê xwedaniya axê ji holê bê rakirin û hemû rantên axê ji bo armancên gelemperî bên bikaranîn.

2. Baceke dahatê ya giran û pilekirî. Dahat çiqas bilind be divê rêjeya bacê jî bi qasî wê radeyê bê bilind kirin.

3. Divê hemû mafên mîratê ji holê bêne rakirin.

4. Divê hemû mal û milkên revok, penaber û serhildêran bêne desteserkirin.

5. Bi riya bankayeke neteweyî ya ku xwedî sermayeya dewletê û gemerdaniya taybet e, divê hemû qredî di destê dewletê de bêne navendî kirin.

6. Divê amrazên ragihandinê û yên veguhastinê di destê dewletê de bêne navendî kirin.

7. Divê fabrîqe û amrazên hilberînê yên aîdî dewletê bêne belave û zêde kirin; erdên vala ji çandiniyê re bêne vekirin û bi giştî jî berdariya axê li gorî planeke hevpar bê zêde kirin.

8. Ji her kesî re binbarîtiya wekhev a xebita. Divê artêşên pîşesaziyê bêne saz kirin, nemaze ji bo çandiniyê.

9. Divê çandinî bi pîşesaziyên çêker ve bên girêdan. Divê cudahiya di navbera bajar û gundan de li seranserî welat bi belaviya zêdetir wekhev a gelheyê re bi bereberetî ji holê bê rakirin.

10. Di dibistanên gelemperî de ji hemû zarokan re perwerdahiya bêdirav. Divê xebitandina zarokan a di fabrîqeyan de ya bi avayê heyî bê bi dawî kirin. Divê perwerdehî bi pîşesaziyê ve bê girêdan, û hwd., û hwd.

Gava ku cudahiyên çînî di nav pêvajoya pêşketinê de ji holê rabûn û hilberîn bi tevahî di destê rêxistina fireh a hemû neteweyê de hat navendî kirin, desthilatiya gelemperî dê rêwişta xwe ya siyasî winda bike. Desthilatiya siyasî ku ev bi nav kirin di cih de ye, li dijî çînekê hêza birêxistinkirî ya çîneke din e. Heke proleterya di domana têkoşîna xwe ya li dijî burjûvaziyê de ji ber zorandina mercan neçar maye ku xwe wekî çînek birêxistin bike, bi riya şoreşekê bûye çîna serdest û mercên kevn ên hilberînê bi darê zorê ji holê rakirine, hingê dê ew bi wan mercan re mercên hebûne yên dijraberiyên çînî û bi giştî ya çînan ji holê rake û bi vî awayî dawî li serdestiya xwe ya wekî çînekê jî bîne.

Li şûna civaka burjûva ya kevn û çîn û dijraberiyên çînî yên wê civakê em ê xwedî yekîtiyekê bin ku tê de pêşketina azad a her ferdekî, merca pêşketina azad a her kesî wê hebe.

# III

# LÎTERATÛRA SOSYALÎST Û KOMUNÎST

## 1. Sosyalîzma Paşverû

### a) Sosyalîzma Feodal

Bi saya derawaya wan a dîrokî nivîsandina namîlkeyên li dijî civaka burjûva ya nûjen bû karê arîstokrasiya Îngilîz û Fransiz. Di Şoreşa Tîrmehê ya Fransizan û tevgera reformê ya Îngilîzan de ev her du arîstokrasî jî li hemberî 'dî û nedîtî' (paşredîtî) yên kerixî dîsa têk çûn. Ji wê demê pê de pevçûnên siyasî bi tevahî ji rojeve derketin. Bi tenê têkoşîneke toreyî ma. Lê di warê lîteratûrê de jî xirecirên kevn ên heyama Restorasyonê[1] hew pêkan bûn.

Da ku xwe xwîngerm bi de xuyakirin, arîstokrasiyê bi neçarî û qet nebe li ber çavan berjewendiyên xwe di paş guhê xwe re avêt û şemisandinên xwe yên li dijî burjûvaziyê li ser navê çîna karkeran rave (formule) kir. Bi rastî jî arîstokrasiyê li ser serdestsên xwe yên nû hîcw strandin; ji guhên wan re der barê bobelata ku nêzîk dibe de mirwayên (kehanetên) bêyom pispisandin û pê re heyfa xwe rakirin.

Sosyalîzma feodal bi vî awayî derket holê: Nîv-gazind, nîv-hicw; nîv-dengvedana demên bihurî, nîv gef û gura paşerojê; car caran bi rexneyên tûj, nuktedar û aşkera êrîşkirina li ser dilê burjûvaziyê... Lêbelê ji ber bêferavetiya ji bo fehmkirina meşa dîroka nûjen ev derbeyên sosyalîzma feodal ji aliyê hêza bandorkirinê ve her tim pêkenok man.

Arîstokrasî ji bo ku girseyên gel li dora xwe kom bike di eniya şer de tûrikê parsê yê proletaran wekî alekê peland. Lêbelê mirovên ku tevlî wan bûn bi qûna wan ve armayên (nîşanên) feodal didîtin û pirî caran bi tîqetîqên tinazker ji wan vediqetiyan.

1 A ku mijara gotinê ye ne Restorasyona Îngilîzan (1660-1689), Restorasyona Fransizan (1814-1850) e.- (Têbîna Engelsî)

Beşeke ji Alîgirên Zagonê (Legîtîmîst) yên Fransiz û komela 'Îngilîstana Civan' ev qeşmerî li ser dika şanoyê pir rind nîşan dan.

Gava feodalîst destnîşan dikin ku rêbaza wan a kedxwariya ji ya burjûvaziyê cuda ye, wê yekê ji bîr dikin: Wan di şert û mercên cip-cuda de kedxwarî dikir û wexta wê yekê derbas bû. Her wiha gava ew destnîşan dikin ku di bin desthilatiya wan de proleteryaya nûjen tune bû, wê yekê ji bîr dikin; Burjûvaziya nûjen berhema jênerevîn a civaka wan e.

Ew nikarin rewişta paşverû ya rexneyên xwe veşêrin. Li dijî burjûvaziyê tawanbarkirina wan a sereke ew e: Di bin pergala burjûva de çînek bi pêş dikeve; çîneke ku erka hilweşandina ji bînî ya pergala kevn li eniya wê hatiye nivîsandin.

Ne ji ber ku burjûvazî proleteryayê diafirîne, lê ji ber ku burjûvazî proleteryayeke şoreşger diafirîne ew jê diqehirin.

Ji ber vê yekê di kardariya siyasî de li dijî proleteryayê tevlî hemû bergiriyên zordest dibin. Di jiyana rojane de jî digel hemû gotinên xwe yên bitûmtûrak sêvên zer ên ku ji dora pîşesaziyê ketin erdê kom dikin. Rastî, evîn û rûmetê difroşin û wekî bergiya wan hirî, şekirê silqê û vexurka dawerivî ya ji kartolan bidestxistî dikirin.[1]

Çawa ku keşe her tim bi mîran re mil bi mil digerin, sosyalîzma Ruhbanî jî bi sosyalîzma feodal re mil di mil digere.

Ji zahidiya filehiyê re dayîna rengekî sosyalîst -tiştekî jê hêsantir nîn e. Ma filehî nabêje ku ew li dijî xwedaniya teybet, zewac û dewletê ye? Li dewsa wan sedeqe û xizanî, nezewicîn û karkirina nefsê, jiyana keşîşxaneyî û Diya Dêr şorind nade? Sosyalîzma filehî bi tenê ava pîroz e, ku keşe pê re berşoşkê arîstokratan dievrînin.

1 Ew yek zêdetir ji bo Almanyayê derbasdar e. Li wê derê arîstokrasiya xwedî erd û mîr, beşên girîng ên zeviyên xwe bi kehyeyan didin çandin û bi ser de jî ew arîstokrat û mîr di heman demê de hilberînerên şekirê silqê û dawerivîner in. Arîstokratên Brîtanyayê ku ji yên Almanyayê dewlemendtir in, hêj jê dûr in. Lê ew jî baş dizanin ka çawa xelef li rantên daketî vegerînin. Ji bo vê yekê navên xwe ji sazgerên şîrketên anonîm ên kêm û zêde şikdar re didin kirê. (Têbîna Engelsî)

**b) Sosyalîzma Burjûvaziya Biçûk**

Arîstokrasiya feodal ne tenê çîneke ku ji aliyê burjûvaziyê ve hate hilweşandin; ne tenê çîneke ku mercên hebûna wê di nav atmosfera burjûvaziya nûjen de bû hilm û gulm û winda bû. Bajarokiyên Serdema Navîn û burjûvaziya biçûk a malbendî şanên burjûvaziya nûjen bûn. Di welatên ji hêla pîşesazî û bazirganiyê ve hindik pêşketî de ev her du çîn li cem burjûvaziya nûjen a ku pêş ve diçe jiyana xwe ya nebatî didomînin.

Li welatên ku şaristaniya nûjen bi temamî tê de pêşketiye, çîneke nû ya burjûvaziya biçûk derket holê. Ew çîn di navbera burjûvazî û proleteryayê de diçe û tê û wekî parçeyek temamker a civaka burjûva her ku diçe xwe nû dike.

Endamên vê çînê ji ber reqabetê her ku diçe yek bi yek diteriqin û tev li proleteryayê dibin. Bi pêşketina pîşesaziyê ve dibînin ku di demeke nêzik de dê ew wekî beşeke serbixwe ya civaka nûjen bi tevahî ji holê rabin û di manûfaktûr, çandinî û pîşesaziyê de dê pişkînêr, kehye û bazarvan bikevin şûna wan.

Li welatên mîna Fransa ku gelheya wê ji nîvê zêdetir ji gundiyan pêk tê, nivîskarên ku li dijî burjûvaziyê di refên proleteryayê de cih digirin bi sirûştî di rexneyên xwe yên li dijî pergala burjûvaziyê de serî li pîvanên gundîtî û burjûvaziya biçûk didan û ji bergeha van çînên navîn piştgiriya proleteryayê dikirin. Sosyalîzma burjûvaziya biçûk ji vir derket. Sîsmondî ne bi tenê li Fransayê li Îngilîstanê jî serekê vê ekolê ye.

Vê ekolê nakokiyên di mercên hilberîna nûjen de bi hendezatiyeke mezin koland. Hincetên du rû yên aborînasan derxistin pêş çavan. Bandorên wêranker ên makîne û karbeşiya kar (ya civakî), di çend destan de navendîbûna sermayeyê û erdê, hilberîna (ape û qeyran bi awaya bi awayekî ku tu kes nikare wan înkar bike, selmandin. Hilweşîna jênerevîn a burjûvaziya biçûk û ya gundiyan, xizaniya proleteryayê, aloziya di hilberînê de, di dabeşkirina dewlemendiyê de newekheviyên mezin, di navbera neteweyan de şerê pîşesaziyî yê man û nemanê, windabûna nirxên sincî, qetandina têkiliyên kevn ên malbatî û belavbûna netewayiyên kevn nîşan dan.

Digel vê yekê ji hêla armancên xwe yên erênî (pozîtîf) ve ev cureyê sosyalîzmê dixwaze an amrazên kevn ên hilberînê û yên danûstandinê û pê re jî têkiliyên kevn ên xwedaniyê û civaka kevn biselihîne (restore bike); an jî di nav çarçoveya têkiliyên kevn ên hilberînê û danûstandinê de pêşî li pêşketina amrazên nûjen ên hilberîn û danûstandinê – yên ku dê bi misagerî têkiliyên kevn ji holê rakin– bigire. Di her du rewşan de jî ew hem paşverû hem jî utopîk e.

Gotinên dawîn ên vê ekolê ev e: Ji bo manûfaktûrê loncayên korporatîf, di çandiniyê de têkiliyên bavkanî (pederşahî).

Axirê, gava ku rastiyên dîrokî yên rikdar hemû bandorên jehriya xwe-xapandinê tune kirin, ev cureyê sosyalîzmê di nav bêhêviyek xedar de bi dawî bû.

## c) Sosyalîzma Alman an jî Sosyalîzma 'Rastîn'

Lîteratûra sosyalîst û komunîst a Fransayê ku di bin pêkutiya burjûvaziya desthilatdar de derket holê û derbirîna têkoşîna li dijî wê desthilatdariyê ye, dema ku ew lîteratûr ket Almanyayê burjûvaziya vî welatî hêj nû dest bi têkoşîna li dijî feodalîzma mutleq kiribû.

Fîlozofên Alman ku qaşo-fîlozof û aqilmendên terabe ne, bi çar lepan bi vê lîteratûrê ve girtin; lêbelê ew yek ji bîr kirin: Gava ku lîteratûra Fransiz koçî Almanyayê kir, ji ber mercên civakî yên Almanyayê vê lîteratûra Fransiz hemû wateya xwe ya kardarî winda kir û bergeheke bi tevahî wêjeyî (nivîskî) girt. Ji ber vê yekê ji bo fîlozofên Alman ên sedsala hejdehemîn daxwazên Şoreşa Fransiz bi tenê daxwazên 'Hişê Kardarî' bûn. Vîna Şoreşger a burjûvaziya Fransiz jî li ber çavên wan zagonên Vîna Xwerû û lewma jî zagonên Vîna mirovên rastîn bûn.

Xebatên rewşenbîrên Alman bi tenê ji wê yekê pêk dihatin: Wan ramanên nû yên felsefî yên Fransizan bi hişmendiya xwe ya kevn a felsefeyî re bênder dikirin; an jî bêyî ku dev ji bergeha xwe berdin ramanên Fransizan ji xwe re dikirin mal.

Zimanekî biyanî çawa dikin mal, ev raman jî bi heman awayî kirin mal. Bi riya wergerê.

Baş tê zanîn ka keşîşan li ser destnivîsarên berhemên klasîk ên dema pûtparêziyê jînenîgariyên tewşûmewş yên Ezîzên Katolîk çawa nivîsandibûn. Rewşenbîrên Alman bi lîteratûra der-olî ya Fransizan re ev pêvajo berevajî kirin. Tewşên xwe yên felsefeyî li bin orîjînalên wan ên Fransiz nivîsandin. Wekî mînak li bin rexnekirina erkên aborî yên diravî ya Franasizan "Biyanîbûna Mirovahiyê", li bin rexnekirina dewleta burjûva jî "Hilweşandina Kategoriya Gelemperî" nivîsandin, û hwd.

Wan ew gotinên felsefî yên bitûmtûrak di bin rexneyên dîrokî yên Fransizan de lehiqandin û bi vî awayî ew bi navên mîna 'Sosyalîzma Rastîn', 'Zanîsta Sosyalîzmê ya Alman', 'Bingeha Felsefeyî ya Sosyalîzmê' û hwd. mêrûn kirin.

Bi vî awayî lîteratûra sosyalîst û komunîst a Fransizan bi tevahî hat xesandin. Û ji ber ku vê lîteratûra di destê Almanan de dev ji derbirîna têkoşîna çînekê ya li dijî çîneke din berda, Alman pê hesiyan ku ew ji heqê 'Yekalîtiya Fransizan' derketin û ne pêdiviyên rast lê pêdiviyên Rastiyê, ne berjewendiyên proleteryayê lê berjewendiyên Xwezaya Mirov –bi giştî berjewendiyê mirovê ku ne aîdî çînekê ye, ne xwedî rastiyekê ye û bi tenê di cîhana bi mij a venîqaşiya felsefeyî de dijî- dinimînin.

Ev sosyalîzma Alman ku wekî xwendekarekî dibistana seretayî girîngiyeke mezin dide sparteka xwe û hebanoka xwe ya jar digihîne tebeqa heftan, di vê navberê de her ku diçe bêguhiya xwe ya lewçetiyê winda dike.

Têkoşîna burjûvaziya Alman û bi taybetî jî têkoşîna burjûvaziya Prûsan a li dijî arîstokrasiya feodal û keyîtiya mutleq, ango bi gotineke din, tevgera lîberal jê cidîtir bû.

Keysa ku ev demeke dirêj e "Sosyalîzma Rastîn" li benda wê bû jê re hat pêşkêş kirin. Ango wê keysa xwe dît ku tevgera siyasî bi daxwazên sosyalîst bide nasîn, nefretên kevneşopî yên li dijî lîberalîzmê; li dijî hikumeta nimanî; li dijî reqabet, azadiya çape-

meniyê, qanûndanîn, azadî û wekheviyên burjûva bi dengekî bilind bîne zimên û ji girseyan re bibêje ku bi vê tevgera burjûvaziyê re ew nikarin tiştekî bi dest bixin û dê her tiştî winda bikin. Lê ya ku Sosyalîzma Alman tam jî di dema ku pêdivî pê çêbû de ji bîr kiriye ew e: Rexneya Fransizan ku Sosyalîzma Alman olana ehmeqî ya wê ye, hebûna civaka burjûvaziya nûjen û pê re jî mercên aborî yên hebûna wê civakê, sazbûna siyasî ya ku li gorî van mercan hat pêk anîn ji pêş ve fireh dikin. Lêbelê li Almanyayê armanca têkoşîna wê demê hêj gihîştina van tiştan bû.

Sosyalîzma Alman wekî batirsokekê li dijî burjûvaziya gefxur xizmet li hikumetên mutleq û li rahîb, profesor, parêzvan û fermanberên wan kir.

Li pey gule û qamçiyên tûj ên van hikumetan Sosyalîzma Alman bû dermanekî şêrîn û ew temam kir. Di heman demê de van hikumetan serhildana çîna karkerên Alman pê re tebitandin.

Gava ku wê Sosyalîzma “Rastîn” li dijî burjûvaziyê wekî çekekê xizmet li hikumetan dikir, di heman demê de berjewendiyeke paşverû –berjewendiya bawerhişkên Alman– dinimand. Li Almanyayê çîna burjûvaziya biçûk a ku bermayiyeke sedsala 16’emîn e û jê pê de bi aweyekî cur bi cur lê her tim serê xwe xuya dike, bingeha civakî ya rast a mercên heyî ye.

Li Almanyayê parastina vê çînê parastina mercên heyî ye.

Serdestiya pîşesaziyî û siyasî ya burjûvaziyê ji aliyekî ve wekî encama navendîkirina sermayeyê, ji aliyekî din ve jî wekî encama pêşketina proleteryaya şoreşger, bo tunekirinê gef lê dixwar. Sosyalîzma Alman ji vê burjûvaziya biçûk re wisa xuya kir ku ew ê bikare pê van her du çivîkan jî bikûje û mîna şaboyekê belav bû.

Sosyalîzma Alman cibeyekî ji tevnepîrikên spekûlatîf raçandî bi kulîlkên xweşgotinê ve xemilandî û bi aviya hestên nexweşok nermkirî li “rastiyên xwe yên nemir” ên mîna ta û derzî kir. Vî cibeyê derxwezayî (transcendental) di nav vê civakê de firotina kutalên wan zêde kir.

Sosyalîzma Alman bixwe jî pê hesiya ku ew nûnerê vê burjûvaziya biçûk a bawerhişk e û her ku diçe wê rewşê dipejirîne.

Wê neteweya Alman wekî mirovê gelale (model) û burjûvayê biçûk ê bawerhişk jî wekî mirovê mînak nîşan da. Ji ber taybetmendiya serpêl a wê gelalêyê re berevajiyê rewişta wê ya rast wateyeke veşartî, bilind û sosyalîst da. Axirê, rasterast li ber dilxweziya "wêrankirina bi tundî" ya komunîzmê rabû û angaşt kir ku ew di ser hemû têkoşînên çînî re û bêalî ye. Ji bilî çend awerteyan hemû weşanên qaşo sosyalîst û komunîst ên ku niha (1847) li Almanyayê digerin, xwemalên vê lîteratûra kirêt û jar in.

## 2. Sosyalîzma Kevneperest an jî Sosyalîzma Burjûva

Beşek ji burjûvaziyê bo ku hebûna civaka burjûva domdar bike û bixe li bin temînatê, dil dike ku êşên civakî biselihîne.

Di nav vê beşê de aborînas, xêrxwaz, mirovhez (humanîst), yên ku dixwazin mercên jiyanê yên çîna karkeran qenc bikin, rêxistinkarên çalakiyên piştevaniyê, endamên komeleyên ajalparêz, alîgirên nermayiyê, ango reformvanên pinî yên ji her cureyî hene. Bi serde jî ev cureyê sosyalîzmê hate dagerandin û wekî sîstemek sehî hate bi pêş xistin.

Wekî mînaka vî cureyî, em dikarin "Philosophie de la Misere" [Felsefeya Xizaniyê] ya Proudhon nîşan bidin.

Burjûvayên sosyalîst dixwazin hemû avantajên mercên civakî yên nûjen bi kar bînin, lê bêyî ku bi têkoşîn û talûkeyên ku encamên jênerevîn ên van mercan in rû bi rû bimînin. Ew, rewşa heyî ya civakê bêyî hêmanên wê yên şoreşger û bişivînar dixwazin. Ew li hêviya burjûvaziyeke bêyî proleteryayê ne. Xwezayî ye ku ji bo burjûvaziyê cîhana herî baş ew cîhan e ku tê de ew bi xwe serdest e. Û sosyalîzma burjûva jî vê tegîhînê pêş ve dibe û bi kêm û zêde dadigerîne pergaleke sehî.

Gava ku ew ji proleteryayê dixwaze ku sîstemeke wiha bisepîne û bi vî awayî rasterast ber bi Kudûsa Nû [bihuşt-t.w.] ya civakî ve bimeşe, di rastiyê de dixwaze ku proleterya di nav sînorên civaka heyî de bimîne û dev ji hemû ramanên xwe yên nebaş ên der barê burjûvaziyê de berde.

Cureyekî duyemîn ê vê sosyalîzmê jî ku ji yê yekemîn zêdetir kardarî lê kêmtir sîstematîk e, hewl dide ku hemû tevgerên sosyalîst ji pêş çavê çîna karkeran bixe û ji bo vê yekê dixwaze nîşanî wan bike ku ne reformeke siyasî, bi tenê veguhêraneke di mercên hebûnê yên madî û têkîliyên aborî de bi kêrî wan tê, lêbelê ev sosyalîzm veguhêranên di mercên hebûnê de qet wekî ji holê rakirina têkîliyên hilberînê -ku ew yek tenê bi riya şoreşekê tê pêkanînfehm nake. A ku ew jê fehm dike ew e: Li ser bingeha hebûna domdar a van têkiliyan reformên rêvebirinê (îdarî); ango reformên ku bi tu awayî bandorê li ser têkiliyên di navbera sermaye û kedê de nake, lê bi egeriya herî baş maliyeta hikûmeta burjûva kêmtir û karên rêvebirinê jî hêsantir dike.

Sosyalîzma Burjûva bi tenê gava ku dibe figûrekî axaftinê derbirîna xwe ya guncan bi dest dixe.

Bazirganiya azad: ji bo berjewendiyên çîna karkeran. Gumrika parêzger: Ji bo berjewendiyên çîna karkeran. Reforma Girtîgehan: Ji bo berjewendiyên çîna karkeran. Gotina davîn a sosyalîzma burjûva ev in. Ji xwe gotina wê ya watedar jî bi tenê ev e.

Mirov dikare vê yekê bi hevokekê xulase bike: Burjûva burjûva ye -ji bo berjewendiyên çîna karkeran.

## 3. Sosyalîzm û Komunîzma Rexneyî-Utopîk

Li vir em qala wê lîteratûra ku di her şoreşa nûjen û mezin de her tim daxwazên proleteryayê anîn zimên -wekî mînak nivîsên Babeuf û hwd.- nakin.

Ji bo gihîştina armancên xwe lêxebitînên ewilîn ên proleteryayê di demên coş û peroşa gerdûnî de bi hilweşîna civaka feodal re pêk hatin. Lêbelê hem ji ber rewşa pêşneketî ya proleteryayê û hem jî ji ber tunebûna mercên aborî ji bo rizgariya wê ev lêxebitîn çar ne çar têk çûn. Mercên pêwîst hêj pêk nehatibûn û bi tenê ji aliyê heyama burjûva ya ku nêzîk dibû ve dê bihatana pêk anîn. Lîteratûra şoreşger a ku hevaltî bi van tevgerên ewilîn ên proleteryayê kir bivê nevê

xwedî rewişteke paşverû bû. Wê lîteratûrê zahîdiyeke gerdûnî û wekheviyeke civakî ya herî çort niçiland seran.

Sîstemên sosyalîst û komunîst ên St. Sîmon, Fourîer, Owen û yên din, wekî ku li jorê hatibûn nîşandin, di peşwextekî de gava ku têkoşîna di navbera proleteryaya û burjûvaziyê de hej pêşketibû derketin holê. (Li bêşa yekemîn–Burjûva û Proleter– binihêrin).

Sazgerên van sîsteman bi rastî di awayê berê yê civakê de hem dijraberiyên çînî hem jî çalakiya hêmanên dêranker dîtin. Lêbelê proleterya ku hêj di dewra naşîtiyê de bû, dîmena çîneke ku xwedî ne tu pêşdestiyeke dîrokî ne jî tu tevgereke siyasî ya serbixwe ye, pêşkeşî wan dikir.

Ji ber ku pêşketina dijraberiya çînî bi pêşketina pîşesaziyê re mil di mil de pêş ve diçe rewşa aborî ya ku wan dîtibû, mercên madî yên rizgariya proleteryayê hêj pêşkeşî wan nedikirin. Ji ber vê yekê li pey civaknasiya nû li pey zagonên civakî yên nû yên ku dê ji aliyê van mercan ve bêne afirandin digerin.

[Li gorî raman û dilê wan] divê çalakiya dîrokî, li çalakiya wan a dahênandî stûyê xwe xwer bike, mercên civakî yên di pêvajoya dîrokî de pêk hatine serî ji mercên nîqaşî re bitewînin û li şûna rêxistina çînî ya jixweber rêxistineke civakî ya ji aliyê van dahêneran ve afirandî bikeve. Bi dîtina wan, dîroka paşerojê xwe dagerîne propaganda û meşandina kardarî ya planên wan ên civakî.

Gava ku ew planên xwe amade dikin berjewendiyên proleteryayê –wekî çîneke ku êşên herî xedar dikişîne– li ber çavan digirin. Li ber çavê wan proleterya bi tenê ew çîne ku êşên herî xedar dikişîne.

Ji ber rewşa pêşneketî ya têkoşîna çînan û her wiha ji ber rewşa pêşneketî ya derdorên xwe, ew xwe li ser hemû dijraberiyên çînî dibînin. Dixwazin mercên her endamê civakê, heta yên herî biîmtiyaz jî, qenc bikin. Lewma wan ew yek ji xwe re kiriye kurm: Bêyî ku kesî ji kesekî din cihê bikin deng li hemû civakê dikin; û bi ser de jî dengkirina li çîna serdest çêtir dibînin. Çimkî, li gorî wan piştî ku sîstema wan carekê hat têgihîştin dê her kes bi misogerî bibîne ku ji bo civaka herî baş plana herî baş ya wan e.

Ji ber vê sedemê hemû çalakiyên siyasî, bi taybetî jî yên şoreşger red dikin. Dixwazin bi riyên aştiyane bigihînin armancên xwe. Bi ceribandinên biçûk ên ku çarneçar beredayî diçin û bi hêza mînakdayînê rê li Pirtûka Pîroz a nû vedikin.

Weneyên wiha yên der barê civaka paşerojê de di dema ku proleterya hêj pêşneketî û jar bû de hatin nîgartin. Wê demê proleterya li ser derawaya xwe xwedî têgihîna nîqaşî bû. Ew têgihîn ji bo, ji nû ve sazkirina giştî ya civakê bi keserên dozînî yên wê çînê re hevkêş e.

Digel vê yekê, ew weşanên sosyalîst û komunîst hêmaneke rexneyî jî dihewînin. Li ser her rêgeza civaka heyî êrîş dikin. Lewma, ji bo ronîbûna çîna karkeran ew bi kereseyên herî hêja tije ne. Bergiriyên kardarî yên ku di nav van weşanan de hatin pêşniyaz kirin wekî ji holê rakirina cudahiyên di navbera bajar û gundan de, ji holê rakirina malbatê, dawîkirina bikaranîna pîşesaziyê ya ji bo berjewendiyên ferdî, ji holê rakirina pergala mizeyê, bangewaziya harmoniya civakî û dagerandina erkên dewletê tenê li venihartina hilberînê -hemû pêşniyazên ji vî cureyî tenê nîşanî ji holê rabûna dijraberiyên çînî dikin; ku wê gavê ew dijraberî hêj nû lê peyde dibûn û di nav van weşanan de tenê bi diruvên xwe yên ewilîn, nîv-diyar û nepeyitandî tên pejirandin. Ji ber vê yekê xisleta van pêşniyazan bi tevahî utopîk e.

Girîngiya sosyalîzm û komunîzma rexneyî -utopîk bi pêşketina dîrokî re xwedî têkiliyeke berevajî ye. Têkoşîna çînan a nûjen çiqas pêş ve bikeve û teşeyeke diyar bigire, ev êrîşên nîqaşî bi qasî wê rêjeyê ji wê berberiyê dûr dikevin û hemû hêjayiya xwe ya kardarî û hemû derbasdariya xwe ya teorîk winda dikin. Lewma, her çiqas afirînên van sîsteman ji gelek hêlan ve şoreşger bin jî şargirtên wan her tim bi tenê mezhebên paşverû pêk anîne.

Ramanên resen ên hosteyên wan li hemberî pêşetina dîrokî û domdar a proleteryayê dest û milên wan zahf hişk girê didin. Ji ber vê yekê, ew her tim dikêfirin têkoşîna çînan bikemijînin û dijraberiyên çînî li hev bînin. Hêj disêwirînin ku utopyayên xwe yên civakî

bi awayekî ezmûnî pêk bînin, "phalanstére"[1] yên îzolekirî damezrînin, "Komeleyên Xwemalî" saz bikin û "Îkaryayeke Biçûk"[2] ava bikin. Ji bo çêkirina van şatoyan jî çarneçar serî li hest û cizdanên burjûvayan didin. Her ku diçe dikevin nav ketagoriya sosyalîstên paşverû û kevneperest ên ku li jorê hatin şayesandin. Bi tenê bi lewçetiya xwe ya zêdetir sîstematîk û bi vajbaweriya xwe ya bi bandorên bêhîtdar ên civakanasiya xwe ji wan vediqetin.

Ji ber sedemên han, ew li ber hemû çalakiyên siyasî yên çîna karkeran bi tundî radibin. Bi dîtina wan çalakiyên wiha dikarin bi tenê ji ber bêbaweriya kor a bi Pirtûka Pîroz a nû derdikevin.

Li Îngilîstanê alîgirên Owen li ber çartîstan, li Fransayê jî Fourierîst li ber "Reformistes" [Reformvanan] radibin.

1 Phalanstéres: Li gorî plana Charles Fourier komoleyên sosyalîst. [Têbîna Engelsî]

2 Îkarya: Cabotî pêşî utopyaya xwe, piştre jî komeleya xwe ya Komunîst a li Amerîkayê wekî Îkarya navand. - [Têbîna Engelsî]

# IV

## HELWESTA KOMUNÎSTAN A LI HEMBERÎ PARTIYÊN DIJBER ÊN CIHERENG

Beşa II'yemîn têkiliyên komunîstan ên bi partiyên hêyî yên çîna karkeran, mîna çartîstên li Îngilîstanê û Reformvanên li Fransayê, aşkera kirin.

Komunîst ji bo gihîştina armancên nêzîk û ji bo xurtkirina berjewendiyên demborî yên çîna karkeran têdikoşin. Lêbelê ew di nav tevgera îroyîn de paşeroja vê tevgerê jî dinimînin û lê dinihêrin. Li Fransayê wan li dijî burjûvaziya kevneperest û radîkal bi Sosyal-Demokratan[1] re tifaqek çêkiriye; lêbelê digel vê yekê li hemberî gotinên bi tûmtûrak û şaşitiyên kevneşopî yên ji Şoreşa Mezin mîratmayî dev ji mafên xwe yê girtina helwesteke rexneyî bernadin.

Li Swîsreyê ew piştgirî didin Radîkalan; lêbelê wê rastiyê ji bîr nakin ku ew partî ji hemanên dijraber -qismen bi wateya li Fransayê ji Sosyalîstên Demokrat, qismen jî ji burjûvaziya radîkal- pêk tê.

Li Polonyayê piştgirî didin wê partiya ku şoreşeke çandiniyê wekî mecra yekemîn a rizgariya neteweti dibîne û li ser vê yekê pêkolî dike. Serhildana Krakow (1846) ji aliyê vê partiyê ve hate geşkirin.

Gava ku burjûvazî li Almanyayê li dijî keyîtiya mutleq, mîrîtiya feodal û burjûvaziya biçûk bi awayekî şoreşgerî tevdigeriya komunîst jî her tim pê re têkoşiyan.

Lêbelê wan tu caran, keliyek be jî, dev ji ronîkirina çîna karkeran bernedan. Wan her tim dijraberiya neyarî ya di navbera burjûvazî û proleteryayê de bi awayekî herî zelal di serê karkeran de niçiland; da ku karkerên Alman bikaribin wekî çekekê li dijî

---

1 Wê demê ew partî li parlamentoyê ji aliyê Ledru-Rollin ve, di lîteratûrê de ji aliyê Louis Blanc ve, di çapemeniyê de jî ji aliyê rojnameya Reformê ve dihat nimandin. Navê Sosyal-Demokrasî bi van dahênerên xwe re nîşanî beşeke ji Partiya Demokratîk an Partiya Komarparêz– wê beşa ku rengê sosyalîzmê kêm û zêde li xwe kiriye– dida. [Têbîna Engelsî]

burjûvaziyê, li dijî mercên civakî û siyasî yên ku burjûvazî bivê nevê bi serdestiya xwe re tîne, sûd jê bibînin ku piştî hilweşandina çînên paşverû li Almanyayê têkoşîna rasterast a li dijî burjûvaziyê zûzûka dest pê bike.

Bi hîmî komunîst bala xwe didin Almanyayê. Ji ber ku ev welat di sihara şoreşeke burjûva de ye. Bi ser de jî ev şoreş bivê-nevê dê di mercên zêdetir pêşketî yên şaristaniya Ewropayê de û bi proleteryayeke ji ya Îngilîstana sedsala hevdehemîn û ji ya li Fransaya sedsala hejdehemîn zêdetir pêşketî bê pêkanîn. Her wiha şoreşa burjûva ya li Almanyayê dê bibe destpêka şoreşeke proleteryayê ya ku dê hema li pey wê pêk were.

Bi kurtasî komunîst li her derê li dijî pergala heyî ya civakî û siyasî piştgirî didin hemû tevgerên şoreşger.

Ew di van hemû tevgeran de, wê demê çiqas pêşketî be bila bibe, pisrgirêka xwedaniyê wekî pirsgirêka sereke derdixin pêş.

Komunîst veşartina raman û armancên xwe nagirin. Bi aşkerayî diyar dikin ku ancax bi hilweşandina bi darê zorê ya hemû mercên heyî yên civakî ew dikarin bigihîjin mebestên xwe. Bila çînên serdest ji ber tirs û xofa şoreşeke komunîst bilerizin. Ji xeynî zincîrên wan tiştekî proletaran nîn e ku winda bikin. Wan cîhanek heye ku bi dest bixin.

*Karkerên hemû welatan, bibin yek!*

"Xeyaletetek li Ewropayê digere: Xeyaleta Komunîzmê. Hemû desthilatdarên Ewropaya kevn –Papa û Çar, Metternîck û Guîzat, Radîkalên Fransiz û sîxurên polîsên Alman– di navbera xwe de tifaqeke pîroz çêkirin, da ku vê spêleyê biqewitînin.

Ma partiyeke muxalîf heye ku ji aliyê dijberên xwe yên desthilatdar ve wekî komunîst nehatibe tawanbar kirin? Û partiyeke muxalîf heye ku wê mora komunîstiyê hem ji partiyên dijber ên ji xwe zêdetir pêşketî re hem jî ji neyarên xwe yên paşverû re bi berepaş ve nepekandibe?

Ji vê rastiyê du encam derdikevin holê:

1. Komunîzm ji niha ve ji aliyê hemû desthiladarên Ewropayê ve wekî hêzekê tê pejirandin.

2. Êdî wextê wê yekê ye ku divê komunîst dîtin, raman, armanc û dilxweziyên xwe li ber hemû cîhanê bi awayekî aşkere biweşînin bi manîfestoyeke partiya xwe bersiva vê çîroka spêleya Komunîzmê bidin."







EVRENSEL
BASIM
YAYIN